

9

بەگیخانی لە فەرەنسا خەڵات دەکرێت

"کورد بە سەدامیان دەچوواندم"

Li Baselê sê nifşên Kurdan hene

6



Hejmar/Nr. 141
05 Nisan / April 2012

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Kemal Kiliçdaroglu ji Rûdawê re axivî:

# Gotûbêj bi PKKê re berdewam in

10 / 11

Wêne: Rûdaw

"Kurd di dest-dirêjiya seksî de di rêza yekê de ne"

7

## Dr. Serbest rewsa Kurdan anî bîra serokwezîr Merkel

2




Dr. Serbest ligel serokwezîra Almanyayê Angela Merkel

Wêne: Dr. Serbest






## Dr. Serbest pêşniyarên xwe pêşkeşî serokwezîr Angela Merkel kirin:

# Divê îmkanên tevlîbûna civakê ji Kurdên Almanyayê re bên dayîn

**Koln (Rûdaw) -** Roja 28ê Adara 2012ê Serokwezîra Almanyayê Angela Merkel li bajarê Almanya Bielefeldê tevlî civîneke cemawerî bû. Di nav derdorê 100 kesên ji hemû beşên civakê yên wî bajarî de vexwendî, akademisyenê Kurd Dr. Serbest jî hebû. Dr. Serbestê ku weke kesê yekê pirs û pêşniyarên xwe pêşkeşî serokwezîr Merkel kirin, bala Merkel kişand ser civaka Kurd li Almanyayê. Ala Kurdistanê ya li ser sînga Dr. Serbest jî bi mebesta diyarkirina hebûna Kurd û Kurdistanê bû.

Di civîna bi navê "Diyalog li ser pêşeroja Almanyayê" de kesên ji beşên cuda yên civaka bajarê Bielefeldê bo vê civînê hatibûn vexwendin. Li vî bajarî hejmarek mezin ya Kurdan jî lê dijîn. Akademisyenê Kurd yê ku 13 salan li vî bajarî dijî jî ji aliyê berpirsa întegrasyonê ya bajarê Bielefeldê hatibû destnîşankirin û vexwendin. Dr. Serbest dibeje ku ji dema hema piştî ku diyar bû ku ewê jî tevlî wê civîna ligel serokwezîr bibe, ew li ser wê yekê fikiriye ka ewê çawa mijara Kurd û Kurdistanê jî bîne rojevê û bala Merkel bikşîne ser Kurdan. Dr. Serbestê ku sosyolojî û pedagojî xwendiye, gellek mijar amade kiribûn ku behsa wan ji Merkelê re bike, lê "ji ber ku bi rastî gellek kes hatibûn vexwendin, tenê demek gellekî kurt ji bo her kesekî hatibû veqetandin".

Lê dîsa jî Dr. Serbest derfet dît ku bala Merkel bikşîne ser Kurdên Almanyayê û herçiqasî wekî pêşniyar nêrînên xwe anîn ziman jî, lê bêtir weke rexne nerînên xwe gihandin Merkelê. Dr. Serbest bal kişand ser siberoja Almanyayê û pirsî "Em kesên Alman di sedsala 21ê de, kî beşek ji vê civakê ye, ki beşdarî Almanyayê û siberoja wê ye?" Dr. Serbest herçiqasî rasterast behsa Tirkan nekir, lê behsa wan komên civakê yên biyanî ku ji salên 1950an ve li Almanayê dijîn û xwedî rêxistin û sazî ne kir û got têr nake ku li Almanyayê tenê rê ji wan civakên rûniştî re bên vekirin, "yên ku ji zû de xwe bi rêxistin kirine û cîhê xwe di nav civaka almanî de dîtine, lê pêwîst e civakên di van dehsalên dawî de jî hatine li ber çav bên girtin û îmkanên tevlîbûnê bidin wan" û weke mînak behsa civaka Kurd li Almanyayê kir: "Em jî dixwazin beşek ji civaka Almanyayê bin, ez carnan hîs dikim ku hînjî derfeta tevlîbûnê ji me re nehatine dayîn. Bo mînak di meseleyên civînan û zirveyan de, em jî dixwazin ji bo civînan bên dawetkirin." Serokwezîr Angela Merkel jî wiha bersiv da daxwazên Dr. Serbest: "Her kesê ku li vir dijî û tevlî karê civakê dibe, beşek ji civakê ye. Herwiha biyanî ne mecbûr in hertim rêxistinên xwe ava bikin lê dikarin tevlî grûbên sporê yên almanî bibin. Ji ber ku yê ku berdewam li Almanyaye dijî, beşek ji welatê me ye jî."

pêşniyarên xwe radestî asîstenta serokwezîr Merkel, xanim Schneider kir. Di wan pêşniyaran de Dr. Serbest pêwîst dibîne ku derfet bê dayîn ku Kurd bêtir tevlî civaka almanî bibin û cîhê xwe bibînin, herwiha saziyên Kurd jî tevlî jiyana siyasî ya Almanyayê jî soz da Dr. Serbest ku van pêşniyazên wî pêşkeşî Serokwezîr Angela Merkel bike û ewê di demek nêzîk de bersiva wî bidin. Lê Dr. Serbest wê bêkêr li benda bersivê nemîne û got ku eger di demek maqûl de bersiva wî neyê, ewê telefonî kesên berpirs bike û li me-Kurd weke kes tevlî civîn û zîrveyên fermî bibin, divê saziyên wan jî bên dawetkirin, çawa ku sazî û rêxistinên Tirkan û Ereban jî têne dawetkirin." Dr. Serbest wê hewl bide ku ji bo zîrveyên întegrasyonê û civînên din Kurd neyên ji bîr kirin, lê ji bo wî giring e ku saziyên Kurdan bên dawetkirin, ne tenê kesên bi serê xwe.



Dr. Serbest ligel şaredarê bajarê Bielefeldê, Pit Clausen

Wêne: Dr. Serbest

### Piştî civînê Dr. Serbest dîsa rastî Merkel hat

Piştî civînê Dr. Serbest dîsa derfet dît ku ligel serokwezîr Angela Merkel biaxive. Wî herwiha pirtûka xwe ya doktorayê jî pêşkeşî Merkel kir. Dr. Serbest ji Merkel re behsa rewşa civaka Kurd û pêwistiya gigingîpêdana bi Kurdên Almanyayê re kir û got ku Kurdên Almanyaye ne tenê Kurd, anjî Alman in, lê Kurd û Alman in. Merkel jî got: "Rast e, ew zengîniyek in."

Dr. Serbest li ser formekê çend bibin û Kurd ji bo civînên giring yên têkildarî komên biyanî li Almanayayê bibin, bo mînak Kurd bo zîrveyên întegrasyonê bêne vexwendin. Asîstenta serokwezîr seleyê bipirse. Lê dibe ku evyek pêwîst neke, ji ber wiha xuya dike ku Dr. Serbest ji bîra Merkel neçûye: "Min telefonî dostekî xwe yê profesor kir, ew jî li paytext Berlînê bû. Wî got ku bi başî behsa min hatiye kirin."

Ji bo Dr. Serbest zêde giring e ku Kurd jî weke komek etnîkî û weke neteweyek li Almanyayê bêne pejirandin û bi vî rengî jî tevlî jiyan û civaka Almanyayê bibin û dibeje: "Têr nake ku

> **Em jî dixwazin beşek ji civaka Almanyayê bin, ez carnan hîs dikim ku hînjî derfeta tevlîbûnê ji me re nehatine dayîn.**

### Heta 30 saliya xwe kurdî nizanîbû

Dr. Serbest, ku navê wî bi fermî Faraj Remmo ye, sala 1969ê li Beyrûta Libnanê ji dayîk bûye û heta niha jî Kurdistan nedîtiye. Wî herwiha heta 30 saliya xwe qet bi kurdî nedizanî. Lê paşê weke ku ew dibeje hestên welatparêziyê li cem wî bilind dibin û dest bi fêrbûna kurdî dike: "Ez ji televizyonên kurdî weke MED TV, Kurdsat û Kurd1ê fêrî kurdî bûm. Berê dema ji min dipirsîn ka ez ji kû me, min digot ez Kurdê Libnanê me, lê piştî demekê vê rewşê ez bêzar kirim û êdî min biryar da ku ez tenê bêjim ez Kurd im, hewqas."

Dr. Serbestê ku piştî qezayekê ji sala 1990î ve felc bûye, li Zanîngeha Bielefeldê, di fakûlteya Perwerdeyê de dersan dide. Ew herwiha endamê partiya Keskan (Die Grünen) e û ligel çendîn rêxistinên Kurdan jî dixebite, weke Yekîtiya Xwendekarên Kurd (YXK) û Kurd SV.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## "Meşa Amarayê" atmosfera Newrozê derbasî Rihayê kir

*Li Rihayê, beriya 4ê Nîsanê, ji bo ku di salvegera rojbûyîna Serokê PKKê Abdullah Ocalan de gel dest bi Meşa Amarayê ya ber bi gundê Ocalan ve neke, rewşa awarte hate îlankirin. Polîs û leşkeran hemû hêza xwe kişandin Elîgor û Pirsûsê û hemû rêyên ku diçin Rihayê kirin bin kontrolê. Lê girseya gel guh neda qedexeyan û roja 4ê Nîsanê hewl dan xwe di rêyên din re derbasî Rihayê bibin.*

*Îsal Meşa Amara ji aliyê TUHAD-FEDê ve hat organîzekirin û dihat çaverêkirin ku di 9. Meşa Amarayê de girseyek mezintir pîrozbahiyê pêk bîne. Lê beriya ku meş dest pê bike, Wezîrê Navxweyî giştînameyek weşand û diyar kir ku destûr nadin meşê. Roja 3ê Nîsanê şandeke ji parlementerên BDP xwest bi konvoyekê herin navçeya Pirsûsê, lê ji aliyê polîsan ve hatin astengkirin.*

### Di kabîneya heftemîn de pêwîst e kî hebe:

# Siyasetvan, teknokrat an jêhatîkrat?

**Dr. Hêja Sindî***

Tê bîra min, berî bêtirî bîst salan, ku ez hê xwendekarê zanîngehê bûm, mamosteyê dersa serkirdayetiyê got "Wek çawa doktorekî jîr pêwîst e çareseriya nexweşan bike, wisa serkirdeyê lêhatî jî divê bikaribe êş û pirsgirêkên jiyana gelê xwe çareser bike."

Ez weke çavdêrekî rewşa avakirina kabîneya heftemîn a Herêma Kurdistanê, bawer dikim ku pirsa gelo hikûmeteke me ya teknokrat an jî partîtî hebe, pirsên normal in. Lê pirs divê kûrtir bin, ango encamên van pirsan yan wê îroya me bidomîne yan wê me bibe dahatûyekî geştir.

Di demekê de ku mimkûn e kabîneya heftemîn bêtir girîngiyê bide bicîhkirina karkirin û naveroka saziyan, ji aliyekî din nebeşdarbûna opozisyonê di kabîneyê de wê sirûştê erkê ser milê serok û cîgirê serokê hikûmetê biguherîne. Bi baweriya min di aliyê çavdêrîkirin û rexnekirina karê kabîneyê de wê goşarên opozisyonê di vê qunaxa dahatî de sexttir bin. Nabe em ji bîra xwe bibin ku ezmûna opozisyonê jî hêdî hêdî xurt dibe, di hûrbîniyên daxuyaniyên wan de jî eşkere ye ku goşarên wan ên profesyonal di rûyê desthilatdariyê de dewlemendtir bûye. Herwiha ji aliyê stratejîk ve jî ez bawerim tê çaverêkirin ku opozisyon hewl bide sûdê ji derfetan bigire da ku şêweyê xwe weke hûrbînek bêtir di xeyala xelkê de bi cîh bike.



Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê yê nû Nêçîrvan Barzanî ligel serokê Tevgera Goran Noşîrvan Mistefa

Wêne: Rûdaw

#### Teknokrat: pîşeya desthilatê

Hevoka teknokrat (Tekno: pîşe) û (krat: desthilat) bi çend corên dîroka akademîk û praktîkî de hatiye pênasekirin û em dikarin bêjin ji aliyekî gellekî teng peyda bûye. Her ji tevgera William Smith di sala 1919ê de, ku bêtir ev ji endazyaran re dihat gotin, ango ev kesê ku di dema biryargirtinê de bîrûbaweriyên wî yên pîşeyî ser wî zal dibin. Ev jî ne şaşî ye eger ev biryar teknîkî be, weke çêkirina dermanekî, yan avakirina pirekê, yan çêkirina aletekê di kargehekê de. Lê dema encama van core biryaran bandora xwe hebe ser jiyana xelkê, wê demê sînorê biryarê ferehtir dibe û faktorên din jî li xwe digire, weke bîrûboçûna gel li ser xebatên hikûmetê ku jê re dibêjin "demokrasiya di xizmetkariyê de".

Guman jî di wê yekê de nîne ku guhertina rola teknokratan bi sedema sazîkirin û pêşketina demokrasiyê di naverasta sedsala borî de ne şaşî bû, lê bo xurtbûna komeke terimên din ên weke "desthilatdariya baş" (Good Governance) rê xweş kir.

#### Heşt aliyên sereke yên desthilatdariyê

Desthilatdariya baş li gor pênaseya Neteweyên Yekgirtî ji heşt aliyên sereke pêk tê: Yek; şefafiyet. Du; gihandina bîrûboçûnên cuda yên civakê bi hevdu. Sê; li peyçûna pêwîstiyên xelkê di dema diyarkirî de. Çar; berpirsatiya ji encama biryaran. Pênc; derfetdayîna ku yasa rola xwe bilîze. Şeş; beşdarbûna xelkê di avakirina biryaran de. Heft; îmkanên cîbicîkirina biryarên xizmetkarî û kelûpelan. Heşt; dadperweriya di derfetan de.

Bi nêrîna me hikûmeteke jêhatî li ser bingehên "desthilatdariya baş" tenê corê hikûmetê ye ku dikare aliyên teknîkî cîbicî bike û di heman demê de baweriyê bide gel, ango dengderan. Ev boçûn wisa dike ku em vegerin ser heşt aliyên pênaseya desthilatdariyê û li vir wê ji me re ronî bibe ku ji bilî "zelalî" û "bihevgihandina bîrûboçûnên cuda yên civakê" û "beşdarîkirina xelkê di avakirina biryaran de" aliyê siyasî ne. Pênc aliyên din jî bêtir aliyên pîşeyî li xwe digirin, weke "dadperweriya di derfetan de" ku plankirina xebatan, mûçeyên berambar, proseya dayîna wezîfedariyê li gor standartê zanistên mirovî, ev hemû mînakên dadperweriya di derfetan de ne.

Kesê jêhatî bo postê wezîr di kabîneya nû de divê "jêhatîkirat" be, ango ji bilî ku ew kesekî siyasî, yan alîgirê partiyekê be, divê:

*❶ Nêrîn û bernameyeke wî ya zelal hebe bo wezareta xwe.*
*❷ Aliyê wî yê exlaqî bilind be, ango pêwîst e lêkolîneke hûr bo dîroka wî bên kirin, heta eger ezmûna wî ya derveyî welat jî hebe.*
*❸ Îmkanên wî yên îdarî hebin bo pêkanîna armancan.*
*❹ Di warê wezareta wî de pisporiyeke wî ya tam hebe, berî ku vê postê werbigire.*
*❺ Ligel parlementer û gel îmkanên wî yên gotûbêjan hebin.*
*❻ Îmkanên wî yên bandorxistinê hebin ligel karmendan û sûdwergirên girêdayî wezareta wî.*
*❼ Îmkanên wî hebin ku baweriya serokwezîran û parlementeran bidest bîne.*

Bo mînak dîroka edebiyata danîna hikûmetê li Brîtanyayê di lêkolîneke pirtûkxaneya Parlementoya Brîtanyayê de eşkere dike ku ev bingehên ku serokwezîr li ber çav digire, bo hilbijartina wezîran ev in: 1- hêjayî di rêvebirinê de; 2- ezmûna siyasî; 3- xurtbûn û jêhatîbûna di gotûbêjên parlementariyê de; 4- liberçavgirtina dilsoziyê. Lê di heman demê de dakokî ser wê yekê tê kirin, ka nasname, yan bernameya berendaman çi ye bo wezaretan, daku di dema bikarbûna wan di postên wan de bikaribin guhertinên corî pêk bînin.

#### Divê serokwezîr pîvanên xwe diyar bike

Loma li vir ez dibêjim ku pêwîst e serokwezîrê kabîneya heftemîn, tevlî nehatina opozisyonê jî bo nava kabîneyê, bila di dema berendamtiya wezîran de pîvanên xwe bi girîngî û analîzeyeke mezin diyar bike.

Ez li vir pêwîst dizanim ku rexneyê li çend hevok, an çend diyardeyan kulturê siyasî û îdarî ya Kurdistanê bigirim: yek jî eve ku teknokratê hevwateya bawernameyê tune, ji ber ku kesên teknokrat gellekî berî dibistanan peyda bûne. Hemû qutabxane û zanîngeh bernameyê wan ê standart û bê kêmatî tune di warê hînkirina meydanî de, tevlî zanîngehên navnetewî jî. Sêyem, eger teknokratî bi ramana pisporî be, ev nabe bibe sedema wê yekê ku doktorek bibe wezîrê tendirustiyê, herçende eger ezmûna rêvebirinê jî di sîstema tendirustiya Îraqê de jî wergirtibe. Ji ber ku ew bi xwe sîstemekî paşketî ye. Ev ji bilî wê yekê ku danîna nêrîneke guncayî bo warê tendirustiya welatekî, paşî danîna bernameyekî siyasî ti têkilî bi ezmûna pizîşkî nîne, eger vî doktorî ji bilî xwendina babetê siyaseta tendirustî ezmûneke baş jî tê de peyda kiribe. Dîsa diyardeyeke din li Kurdistanê, ku ev çend sal in peyda bûye, hewldana hin berpirs, an siyasetmedaran e bo wergirtina bawernameya bekaloryos û bilindtir, ku di aliyê maf û adetê akademîk de ev li cem min gellekî normal e. Lê ev nabe bibe hinceta hêjayîkirina wî bo desthilatdariyê, yan domkirina mayîna wî di vî postî de.

#### Wezîr li Kurdistanê li ser bingeha siyasî tên hilbijartin

Divê bawername bandorê li ser xwediyê xwe bike û di îmkan û bîrûbaweriyên wî de diyar be. Ev tişt jî diyardeyeke seyr tîne bîra min: di malpera wezareteke kabîneya şeşem de, di beşa danasîna wezîr de pisporiya wî ya sereke ku bi ti awayan peywendî bi karê wezareta wî ve nîne xistine yekem rêzê. Lê pisporiya ku wî piştre bidest aniye û pêwendî bi wezareta wî heye, xistine dawiyê. Ev jî tê wateya ku bawernameya wî ya duyem ti rengvedan li ser wî nebû. Lê em li Kurdistanê dibînin ku herçende wezîr bêtir ser bingeha siyasî tên hilbijartin, ew dîsa jî diçin nava hûrkariyên teknîkî yên wezaretên xwe. Ev jî bi şêweyekî eşkere di dema encamdana dîdaran ligel hinek wezîra diyar dibe, ku weke rêvebirên giştî diaxivin, li şûna ku stratejî, bername û nêrîna xwe bo me binirxînin.

** Serokê Beşa Siyasî û Civakî ye li Zanîngeha Dihokê*

## Şirove



### Konferansa Dostên Gelê Sûriyê

**Mahmut Kilinc**

Konferansa *"Dostên Gelê Sûriyê"* ya ku Kurd nehatibûn vexwendin, li Stenbolê civiya. Tirkiyeyê ji konferansê hêviyên mezin hebû, lê daxwazên wê bê bersiv man. Tê bawerkirin, ku di nevexwendina Kurdan de destê wê heye.

Tirkiyeyê dixwest, ku bila Encumena Niştimaniya Sûriyê (ENS) yekane nûnerê dijayetiyê (muxalefet) bê pejirandin, "Artêşa Azad ya Sûrî" bê biçekkirin, bila konferans li dijî Beşar Esed birayarek dîrektîfî qebûl bike û plana Kofî Annan şûnda bê vegerandin.

Ji vana jî girîngtir, beşdariya konferansê ne di astek bilind de pêk hat, Tirkiyeyê, bi beşdariya wezîra derva ya DYAê rayagiştî mijûl kir.

Encama civînê ya nehatî ragehandin jî, îhtimalek ne dûr e, ku Beşar Esed bervêder (muxatap) bê girtin. Ji niha ve qala danîna sandoqan tê kirin. Serokwezîrê Tirkiyeyê ne dûr, çend rojan berê bi tundî êriş dibir ser Beşar Esed, lê piştê serdana Îranê peyam da ku bila sandoq bêne danîn.

Heta payîza îsal ew rewşa nezelal wê bidome, ji ber ku li DYAyê hilbijartin heye û tê payîn serokê niha Barak Obama carek din bê hilbijartin. Obama wê nexwaze ku li ber hilbijatina wî geşedanên metirsîdar biqewimin.

Ji encamên civînê tê xuyakirin, ku mexsed û mirazê Tirkiyeyê di gewriyê da ma. Helbet divê rewşa Tirkiyeyê di cih da bê nirxandin, jeopolîtika wê, hêza wê ya herêmî, lê mudaxeleyek çekdar ku Tirkiye xwedî rolek diyarker be, bi ti avayî ne li kêrî berjewendiyên gelê Kurd e, digel rewşek wiha heta ku Tirkiye bi eşkere û ligel hêzên navneteweyî mafê gelê Kurd qebûl neke, bêşik divê Kurd li dijî rola wê derkevin.

Ango, ew rewşa nediyarî wê li kêrî berdewambûna desthilatiya Beşar Esed bê, lê dîsa jî piştê ewqas şer, pevçûn, kaosa civakî ne pêkan e ku ew bi salan desthilatiya xwe bidomîne.

Nêzik, an dûr desthilatiya Beşar Esed wê bi dawî bê. Kurd dikanin ji vê rewşa nediyar sûdê werbigrin. Bêşik, divê ENKSê û PYDê pirr bibalkêşî pêvejo bişopînin, ji ber ku ENSê di "Mîsaqa Niştemaniya Sûriya Pêşerojê" da cî neda nasnameya kurdî û ew wek miletê duyem û mafê çarenûsî nehat pejirandin.

Desthilatdar dibe, an dijayetî dibe, divê me hay ji rastiyek dagirkerên Kurdistanê hebe. Bi ya ceribandina hezaran car hatiye dîtin, heta ku lê neyê ferz kirin ew bi serê xwe mafên miletê Kurd qebûl nakin. Demokrasî, hiqûq, mafên mirovan, mirovahî, hevaltî û dostanî ligel wan, dema mafên miletê Kurd hat rojevê ti wateya van nirxan namîne.

Sê mînakên rojên dawî balkêş in. Yek ji vana, li Bakurê Kurdistanê, partî û saziyên sivîl, biryar dan ku bi hevre li ser çar daxwazên demokratîk ji gel îmza tomar bikin, lê parêzgerê Amedê çalakî qedexe kir. Belê îmza tomarkirin qedexe kir, ne pevçûnek çekdarî.

Mînaka din, hikûmeta Bexdadê dest daniye ser bedela nefta ku ji derva re tê firotên, ji serê salê vir de para Başûrê Kurdistanê hatiye desteser kirin.

Sê, nevexwandina tevgera başûrêrojavayê Kurdistanê ya civîna Stenbolê.

Ev hersê mînakên rojên dawî bi me dide xuya kirin, ku pejirandina heq û hiqûqa miletê Kurd, yên herê rewa jî, li wana giran tê. Divê Kurd bi destê xwe dîwarên mala xwe lêkin.

**Roja Navnetewî ya Pêşxistina Hişmendî û Hişyarkirina Mayînan:**

# Tirkiye guh nadê peymanan

» Tirkiyeyê di sala 2007ê de Peymana Mafên Kêmandaman a Neteweyên Yekbûyî îmze kir, lê ti car cirm anjî alîkariya darayî neda qurbaniyan.

**Selahattin Çelîk**

Di 4ê Nîsana 1997ê de Prenses Diana li Angolayê di nav zeviyekê de meşiya bû, ku têde di cîhê tov de mayînên bejahî hatibûn çandin. Ji hingî ve ev roj weke "Roja Navnetewî ya Pêşxistina Hişmendî û Hişyarkirina Mayînan" tê bibîranîn û bi vê boneyê gellek çalakî tên lidarxistin.

Derbara mayînan de peymana herî girêdar Peymana Ottowa ye. Di 1990î de rêxistinên civakî li Amerîka û Ewropayê, bi mebesta qedexekirina mayînan, dest bi kampanyakê kirin. Kampanyayê di 04.12.1997ê de li Ottowa/Kanada dest bi îmzekirine kir. Peyman di 01.03.1999 de ketê meriyetê. Peyman hilberîn, bikaranîn, depokirin û firotina mayînên dijmirovan qedexe dike û tinekirina yên heyî jî dide ber xwe. Di nav deh salan de hejmara dewletên peyman îmzekirî, ji 40î derket 156ê. Lê bi dewletên qeware, weke DYA, Rûsya û Çîn re, hêjî 40 dewletên ku peyman îmze nekirî hene.

Wisa tê hizirkirin ku li seranserê dinyayê li 64 welatan, bêtirî 100 mîlyon mayînên bejahî hene. Ji ber van mayînan her roj 50, di salekê de 15-20 hezar însan jiyana xwe ji dest didin. Ji bo çêkirina mayînekê 3-75 Dolar, lê ji bo rakirina wê 300-1000 Dolar pêwîst e.

### Kurdistan bihuşta mayînan e

Di serdema Baasê de artêşa Îraqê ne tenê komkujî dikirin, li gellek erdên Kurdistanê mayîn diçandin. Di serî de Rûsya (kevne YKSS), dewletên Bloka Sosyalîst, Almanya, Fransa, Îngilistan, taybetî jî Îtalya rasterast û DYA jî bi reya Şîlî mayîn firotibûn Îraqê.

Lê di mayînkirina xaka Kurdistanê de Tirkiye serî dikişand. Sînorê Tirkiye-Sûriyê 870 km ye û di salên 1950an de hat mayînkirin. Dirêjbûna erdên mayînkirî 510 heya 700 km, kûrbûn jî 300 heya 600 metre bûn. Dora 200 mîlyon metre çargoşe erdên zevî û bi deramet, hatibûn mayînkirin. Binê van erdan jî ji aliyê av, xaz û petrolê dewlemend e. Ji bo pakijkirina vî erdî dora 3 milyar Dolar pêwîst e. Ji ber çiyadarbûna tixubên bi Îraq û Îranê ve, mayîn bi zêdeyî li rêçik û gedûkên çûnûhatinê dihatin çandin. Ne bi tenê deverên tixub, lê dora gundên valakirî û qerekolan û li ser hin rêyan jî mayîn dihatin çandin. Bi taybetî ji 1992yê û pê ve li herêmên ku lê gund hatin valakirin de, deverên fireh hatibûn mayînkirin. Arteşa Tirk, gava bi mehna PKKê li Kurdistana Başûr operasyon dikir, li pirr cîhan mayîn diçand û qurban jî bi gelemperî sîvîl dibûn.

Li gorî daneyên artêşa Tirk, berî 1998ê 1 mîlyon 2 hezar 199 mayîn hatibûn çandin. Xwedegiravî ji wan 20 hezar 490 hatibûn rakirin, lê hêj 981 hezar 790 hebûn. Ev mayînên bejahî bûn: Qasî 615 hezar li tixubê Tirkiye-Sûriyê, 75 hezar li yê Tirkiye-Îraq, 192 hezar li yê Tirkiye-Îran, 22 hezar li yê Tirkiye-Ermenîstan û 80 hezar jî li herêmên navxwe hatibûn çandin. Ji vî 80 hezarî, 19 hezar ji berî 1991ê, 63 hezar jî di 1992yê û pê ve hatibûn çandin.

Mayînên ku Tirkiyeyê bikardianîn cûrbicûr bûn: Mayînên bi pariyan barkirî, dijtank, bitêl, taybet, zîz, bikablo û mayinên dereng diteqin anjî yên komkuj.



**Salih Öztekin di 03.06.1992yê de li Ceylanpinarê milekî xwe di encama teqîna mayînekê de winda kir**

Di kargehên Pîşesaziya Makîne-Kîmya (MKE) de mayîn tên hilberîn, lê bi lîsansa hevbendên NATOyî. Ê herî zêde mayîn difirotin Tirkiyeyê, DYA bû. Li gorî çavkaniyên Projeya Çavdêriya Çekan ya Mafên Mirovan a DYA, di serdema 1980-1994ê de DYA 40 hezar mayînên dijtank û dijmirov û guleyên topan ADAM dabûn Tirkiyeyê. ADAM ji bi topên 155 mm dihatin avêtin û di guleyekê de 36 lib mayînên dijmirov hebûn. Gava gule li erdê diket, mayîn bi her aliyan ve belav dibûn. DYA heya 1994ê 952 ADAM dabûn Tirkiyeyê û têde 34 hezar 380 mayîn hebûn.

Almanyayê jî di 1992yê de 20 lib wesayîtên mayîn hilkirin û çandinê, yên ji Almanyaya Rojhilat mayî, dabûn Tirkiyeyê. Li Kurdistanê mayînên hilberîna şirketên almanî RTG û Diehl jî hatibûn dîtin. Şirketa Eurometal ku hevpariya Almanya (Dynamit Nobel), Holenda û Swîsreyê bû, mayînên heya metrekê dipekîn firotibûn Tirkiyeyê. Eurometal berhemên xwe li Tirkiyeyê hilberandin. Şirketa Mac-Marconi ya îngilizan jî li Tirkiyeyê mayîn hilberandin.

### Tirkiyeyê peyman îmze kir, lê gûh nade peymanê

Tirkiye di 12.03.2003yê de Peymana Ottowa îmze kir. Di 2004ê de li himberî peymanê bû berpirsiyar. Li gorî peymanê, divê Tirkiyeyê heya 01.03.2008ê mayînê depokirî tune bikirana û heya 2014ê jî yên çandî rakirina û alîkarî bidaya qurbanên mayînan. Li gorî daneyên dewletê, di 2007ê de di depoyên dewletê de 2 mîlyon 616 hezar 770, di zevî û bejahiyê de jî 982 hezar mayîn hebûn. Ji wan 818 hezar 220 ên dijmirovan û 164 hezar 497 jî yên dijwesayîtan bûn.

Di 23.11.2011ê de li Kamboçyayê civîna dewletên îmzekerên peymanê çêbû. 87 dewlet li ser sozên xwe sekinîbûn û depoyên mayînan tine kiribûn. Lê Tirkiye ne di nav wan de bû. Tirkiyeyê sozên xwe neanîbûn cîh û rêgezên peymanê binpê kiribûn. Û bê şik û guman Tirkiyeyê bi mayînfirotina welatên sêyemîn peyman bi domdarî binpê dikir. Di salên dawî de ji bo pakijkirina mayînan li ser tixûbê Tirkiye-Sûriyê hin gotûbêj çêbûn. Berpirsiyarên hikûmetê hin daxuyaniyên erênî dan, lê hewqas. Di kirdariyê de ti gav nehatin avêtin.

Tirkiyeyê di 30.03.2007ê de Peymana Mafên Kêmendaman a Neteweyên Yekbûyî îmze kir, lê ti car dewletê cirm an jî alîkariya darayî neda qurbanên mayînan. Lênêrîna wan a tibî jî, eger sîvîl bin, nagire ser xwe.

Divê mirov têbinî bike ku PKK jî mayînan bi kar tîne. Û bi zêdeyî jî qurban sîvîlên Kurd in. Her çiqasî li gor yên dewletê ev xefikên PKKê gellek hindik bin jî, armanc çi be û ji aliyê kî be jî, bikaranîna mayînan karekî dijmirovahiyê ye û binpêkirina peymanên navnetewî ye.

# Reva leşkerên Kurd ji nav artêşa Sûriyê berdewam e

# Di mehekê de 600 leşker gihiştine Herêma Kurdistanê

**Ebdulla Nihêlî**
**Silêmanê Alîxan** Dihok

Reva welatî û leşkerên Kurdên Rojavayê Kurdistanê ji ber rêjîma Beşar Esed bo Herêma Kurdistanê berdewam e û di hundirê mehekê de jî 600 leşkerên Kurd ji Sûriyê reviyane.

Reva Kurdên Rojavayê Kurdistanê ji ber rêjîma Beşar Esed di sala 2004ê de, piştî bûyerên li Qamişloyê, dest pê kir. Heya niha du kamp ji bo van penaberan li Herêma Kurdistanê hatine vekirin, yek ji wan kampa Muqbilê ye li rojavayê bajarê Dihokê û 75 malbat û 14 ciwan lê dijîn. Herwiha kampa Domîz (Qamişlo) li başûrê Dihokê, ku zêdeyî sed malbatan tê de dijîn.

Li gor agahiyên çavkaniyeke ewlekariyê, di hundirê mehekê de 160 malbatên Rojavayê Kurdistanê hatine Herêma Kurdistanê, ku 5 ji wan malbatan li kampa Muqbilê bicîh bûne. Her li gor agahiyên wê çavkaniyê 600 leşker û ciwanên Kurd ji leşkeriya Sûriyê reviyane û hatine Herêma Kurdistanê, ku 7 ji wan bi birîndarî reviyane.



Ji leşkerên Kurd ên ji artêşa Sûriyê revîyane û hatine Herêma Kurdistanê 7 kes birîndar in.

Wêne: Rûdaw

## Ji xwendinê bêpar in

Li nav kampa Muqbilê çend zarok diyar dibin, ku li çaraliyên konan dileyîzin. Pirraniya wan zarokan temenê wan zêdeyî 6 salan e, lê belê ji ber nebûna dibistanan nikarin bixwînin, neçar in alîkariya mezinan bikin di karê giran de, yan bileyîzin.

Jineke 50 salî, ku çend roj in ji Sûriyê reviyaye, li ber deriyê konê xwe li kampa Muqbilê rûniştî ye. Wê qala rewşa malbata xwe ji Rûdawê re kir û got ku 9 zarokên wê hene, yek ji wan di qonaxa sêyem a kolêja endezyariyê de bû, yek ji wan li enstîtuyê bû û yek jî di sinifa 9ê de bû, lê ew neçar bûn ku dev ji xwendina xwe berdin û birevin Başûrê Kurdistanê. Vê jina, ku ji tirsa rêjîma Baesî ya sûrî naxwaze navê wê û malbata wê bên belavkirin, got: "Îsal xwendina zarokên min li min çû, siberoja me jî li vir ne zelal e. Alîkariya me li vir nehatiye kirin, tenê hinek xwarin dane me. Kurê min leşker bû, herdem ew dibirin daku xwenîşanderan bikuje, wî jî ev yek red kir û ji artêşê reviya. Nediwêra vegerê male jî, ji ber ku mala me li jêr çavdêriyê bû, lewma em neçar bûn birevin Başûrê Kurdistanê."

## "Soz da wan û ew kuştin"

Ev jina Kurd ku ji bajarê Qamişloyê ye, serpêhatiya kuştina leşkerekî cîranê xwe ji Rûdawê re vedibêje. Ew dibeje ku kurê cîranê wan ji eskeriyê reviya, hikûmet pê hesiya û pêwendî bi bavê wî re kirin, bavê kurik jî doz dabû wan ku kurê xwe vegerîne leşkeriyê: "Lê piştî 3 rojan termê wî avêtin ber mala wî û şûna îşkencekirinê li ser laşê wî diyar bû."

Ew her çiqasî li Başûrê Kurdistanê parastî bin jî, lê hêjî sîbera tirsa rêjîma Baasê ya Sûriyê li pey wan e, lewma di dema axaftina wan bo Rûdawê de razî nedibûn navê wan bê belavkirin. Tirsa wan ji wê yekê heye ku hêzên ewlekariyê yên Sûriyê heyfê ji mirovên wan hilînin.

Ciwanekî Kurd ku şûna îşkenceyê li ser laşê xwe nîşanî peyamnêrê Rûdawê da, çîroka xwe wiha vegot: "Ji ser karê xwe vedigeriyam, li bajarê Humisê leşkerên sûrî ez girtim û ez birim zindanê. Li wir bi elektrîkê îşkence li min kirin, piştre ji min pirsîn ka ez tevlî xwenîşandanan dibim. Min jî got na, ji ber wê ez serbest berdam."

## Gulleberdana keyfî

Ebbas Dêrikî, ku 4 mehan ji bo xizmeta leşkerî hatibû vexwendin, di artêşê de şofêrê tankê bû. Ebbas heftiyeke ku li bajarê Dêrikê dev ji artêşa sûrî berdaye û hatiye Başûrê Kurdistanê. Ebbas diyar kir ku dihatin mecbûrkirin bi awayekî keyfî guleyan berdin: "Çend caran min bi çavê xwe dîtiye ku bi awayekî keyfî teqe li welatiyan kirine û jin û zarok kuştine, piştre digotin terorîst wiha dikin." Navborî da zanîn ku li her devereke ku xelkên sivîl kom bibûna, leşker dişandin ser wan û gulle berdidan wan: "Min jî nedixwest xwîna Kurdan û xelkên Sûriyê bi destê min birije, lewma bi çar leşkerên Kurd yên din re reviyam û hatim Herêma Kurdistanê."

## Çêkirina hêza leşkerî

Ebbas Dêrikî dibêje ku di hundirê vê mehê de hejmareke zêde ya leşkerên Kurd dev ji artêşa sûrî berdane û hatine Herêma Kurdistanê: "Nêzîka 160 leşkerên Kurd ku temenê wan di navbera 18-28 salan de ye, li kampa Muqbilê ne, nêzîka 200 kesan jî li kampa Qamişlo ne, 200ên din jî li Zaxo û Hewlêrê ne."

Dêrikî qala rewşa leşkerên Kurd yên di nav artêşa Sûriyê de dike û dibêje: "Ji aliyê berpirsên me ferman li me dihat kirin ku gulleyan berdin welatiyên Kurd, lê me wiha nedikir, lewma em dihatin cezakirin. Heft leşkerên Kurd bi birîndarî ji Sûriyê reviyane ku vêga 4 ji wan li nexweşxaneya Dihokê tên dermankirin." Navborî bi navê hemû leşkerên reviyayî yên Kurd daxwaz ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê kir ku "hêzeke leşkerî ji van leşkerên Kurd çêbike."

## "Hinek ji wan ji bo kar hatine"

Derbarê rewşa penaberên Rojavayê Kurdistanê, rêveberê karûbarên penaberan li Dihokê, Mihemed Ebdulla, got her penaberek ku ji Sûriyê bê Herêma Kurdistanê, pêwistiyên wek betanî û kon û hinek kelûmelên xwarinê jê re tên misogerkirin." Roj bi roj hejmara van penaberan zêdetir dibe, lewma jî serjimêriyeke hûr li ber destê Mihemed Ebdulla nîne, lê wî got ku niha ew bi çêkirina kampekê li Balqus ji bo van penaberan mijûl in. Rêveberê karûbarên penaberan li parêzgeha Dihokê diyar kir ku pirraniya kesên ku hatine xort in û hê jin neanîne.

Çavkaniyekê ji ewlekariya Sêmêlê ji Rûdawê re ragihand ku rojane welatiyên Kurd ji Sûriyê bi qaçaxî tên Herêma Kurdistanê: "Di du mehên borî de 600 leşker û welatiyên daxwazkirî bo leşkeriyê ligel 160 malbatan ji Sûriyê hatin Herêma Kurdistanê." Herwiha çavkaniyeke din ya ewlekariyê ji Rûdawê re got, li gor agahiyên wan hinek ji van penaberan piştî ku hatine Herêma Kurdistanê pêwendî bi xizmên xwe re kirine û ji wan re gotine li vir kar û pere zêde hene û werin vir. Kesên ku tên pirraniya wan dibêjin em leşker bûn, yan em beşdarî xwenîşandanan bûne, lê ne rast dibejin, pirraniya wan hatine ku ji xwe re kar bikin."

Mehmet Sebatli

Endama SPê û ya Meclisa Bajarê Baselê, Edibe Golgelî Filmci

# Li Baselê sê nifşên Kurdan hene

» Di Cotmehê de hilbijartinên Parlementoya Kantona Baselê hene û Filmci berendama SP ye



Piştî ku li li Mereşê di Kanûna 1979ê de êrîşa hêzên dewletê û faşîstan çêdibe, bi sedan malbatên Kurdên Elewî berê xwe didin Ewropayê. Paşê cûntaya 12ê Îlonê jî rû dide û ji devera Dêrsimê jî bi hezaran malbat berê xwe didin welatên Ewropayê. Pêla sêyem a koçberên Kurd di destpêka salên 90î de çêbû û weke gellek bajarên Ewropayê, Basel a Swîsreyê jî ji van her sê pêlan koçber pêşwazî kirin. Malbata Golelî di sala 1969ê de ji Pazarcikê koçî Baselê kirine û keça wan Edibe Golgeli di sala 1978ê de weke nifşê duyem li Baselê hatiye dinyayê; 6 xwişk û birayen wê hene û wê li vî bajarî xwendiye, mezin bûye û zewiciye. Taybetmendiyeke Golgelî heye ku di heman demê de 5 karan dike û dikare bi 7 zimanan biaxive ku yek ji wan jî kurdî ye.

Edibe Golgelî (piştî zewacê paşnavê Filmci jî digire) di heman demê de çendîn karan bi hev re dike. Karê wê yê li ser perwerde dîtiyê, aborîvan e. Lê ew niha di şîrketeke telekomûnîkasyonê de menajertiyê dike; hevseroka Komeleya Koçberên Nifşa Duyem (Second@s Plus) e û Hevseroka Komeleya Dostaniya Kurd û Swîsreyiyan (SKG- Schweizerisch Kurdische Gemeinschaft) e, û ji Gulana 2011ê pê ve jî di Kantona Baselê de endama Rêvebiriya Komîsyona Beşa Karên Hevwelatiyê ye.

### Derbarê dosyeyên hevwelatiyan biryarê dide

Edibe Golgeli Filmcî di hilbijartina Gulana 2011yê de wek endama Melisa Şaredariya Baselê hat hilbijartin. Weke ku Filmci bo Rûdawê diyar kir, di 3 salên dawî de berpirsiyarî û karên bajarê Baselê hatine kêmkirin û rêvebiriya kantonê karên zêde daye ber xwe. Yek ji karê ku Filmci li şaredariya Baselê dike bo koçberên Kurd jî girîng e. Kesên ku dixwazin hevwelatiya Swîsreyê bigirin, serî li komîsyona taybet didin û dosyeyên wan jî tên ber destê komîsonya ku Filmci jî tê de endam e. Filmci jî yek ji wan karmendan e ku bi xwe serdana hevwelatiyê dike, bi wan re diaxive û derbarê dosyeya wî kesî de biryarê dide: “Komisyona me ji 9 kesan pêk tê. Em her rojên înê dicivin û bangî kesên ku dixwazin bibin hemwelatî dikin û jê pirsan dikin ka ew dikare bibe hevwelatî, yan na. Paşê jî em wek komîyon biryarê didin ka dibe hevwelatiyê Swîsreyê.

### Berendama parlementoya Kantonê ye

Li gor agahiyên ku Edibe Golgelî Filmci dane Rûdawê, li Baselê bêtir Kurdên ji Mereşê (navçeyên Pazarcik û Elbistanê), Dêrsimê, Erzincanê û ji bajarê Anatoliya Navîn hene: “Malbatên ku di navbera salên 1977-1980yî de hatine, piştî ku bicîh bûne, xizmên xwe jî anîne û hejmara xwe zêde kirine. Di salên 80yî de ji Dêrsimê jî gellek Kurd hatine. Gellek ji van Kurdan Elewî ne û penaberên siyasî ne, kesên ku ji ber pirsgirêkên aborî jî hatine hene, ew jî bêtir Kurdên Sunî ne û ji Konyayê hatine.

Di payîza bê de ji bo Parlementoa Kantona Baselê hilbijartin tên kirin û Filmci jî di nava lîsteya Partiya Sosyaldemokratan (SP) de berendam e. Filmci diyar kir ku ew hem wek SP û hem jî wek saziyên civakî bo girseya Kurd gellek projeyan dane pêşiya xwe û got ku di kampanyaya hilbijartinê de xebatên wan ên zelal bo Kurdan hene.

### Divê Kurd bikevin nava NGOyan

Filmci dibêje ku nêzîka 10 hezar Kurd li Baselê dijîn û ji wan 45% bûne hevwelatî. Filmci Kurdên Baselê di nava sê nifşan de dabeş dike û dibêje: “Kesên ku pêşî hatin vir niha kal bûne û gellek ji wan kar nakin, teqawut bûne û tenê pirsgirêkên wan ên tendirustiyê hene. Pêdiviya wan bi hewandina di malên ewle de heye.” Filmci balê dikişîne ser nifşên nû û dibêje: “Li Baselê hejmara nifşa duyem pirr zêde ye û ev nifş pirr çalak e û niha nifşeke din jî heye. Pirsgirêk û pêdiviyên vê nifşê bêtir perwerde, kar, întegrasyon û pirsgirêkên psîkolojîk in. Bi taybetî di nava ciwanan de bûyerên maddeyên hişbir û bûyerên tundiyê pirr rûdidin.”

Filmci di dawiya axaftina xwe de bang li Kurdan dike ku di nava saziyên civakî û NGOyan de cîh bigirin û wek lobiya kurdî kar bikin. Filmci diyar dike ku Kurdên Baselê bi bûyerên siyasî û civakî yên Kurdistanê re zêde mijûl dibin û got, “Em hewl didin ku alîkari û xizmetê bidin wan. Mînak em şandan bo welat hildibijêrin û rêdikin, saziyên humanîter û partiyên siyasî yên bajêr agahdar dikin û alîkariya wan dixwazin.”

# Li Berlînê *Heftiya Kurdî* hebû



Wêne: Rûdaw
Dîmenek ji Heftiya Kurdî li Berlînê

Armanc Egîd Nêrweyî
Berlîn

Di meha Adarê dê 26 komel, sazî û partiyên siyasî li Berlîn û Brandenburgê bi serperiştiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê û piştevaniya Partiya Çep a Alman (Die Linke) Hefteya Kurdî organîzekirin. Hinek alîgirên PKKê bi poster û alayan çûn ser dikê û slogan avêtin, komîteya amadekar jî got “Sala bê em saziyên PKKê venaxwînin.”

Çalakiyên Hefteya Kurdî roja 9ê Adarê destpêkirin û dawiya her hefteyê heta 1ê Nîsanê dom kirin. Çalakiya yekem Duyemîn Konferansa Jinên Kurd li Ewropa bû ku di 9ê Adarê de hat li dar xistin. Çalakiya duyemîn ya ku roja 16ê Adarê hat li dar xistin derbarê danasîna komkujiya Helebçe bû û rojeke din jî di panelеke bi almanî de derbarê Serhildana Qamişlo û komkujiya Roboskê jî agahî hatin dayîn. Panel ji aliyê Dr. Gondî (ji Rojava), Kakîxom (ji Başûr), û Ali Susen (ji Bakur) hatin dayîn.

Di 31ê Adarê de jî semînerek taybet ya bi navê 66. salvegera Şehadeta Pêşewa Qazî Mihemed, Jiyan Bîr û Raman û Armancên wî hat li dar xistin. Axaftvanên semînerê Kakşar Oremar, Nûnerê PDKê Sîpan Amêdî û nûnerê û Hizbî Demokratî Kurdistanî Îran Hacî Cundî bûn û semîner ji aliyê Rojnamevan Armanc Egîd Nêrweyî ve hat birêvebirin. Di roja dawî de, 1ê Nîsanê, li bexçeyê Waterloo Ufer, bi beşdarbûna Hozan Devran, Hozan Serdar - Rêzan, Hêmin Elî stran û helbest hatin gotin û govend hat girêdan.

### Lorîn Sîdou: 18 Komele û sazî endamên me ne

Seroka Kurdische Gemeinde zu Berlin und Brandenburg e.V. bo Rûdaw axivî û got ji 26 komele, sazî û partiyên siyasî ku tevlî Hefteya Kurdî bûn, 18 komele û sazî endamên wan in. "Me weke Kurdische Gemeinde alîkarî da û ji hinek sponsoran jî 11 hezar Euro pere komkirin. Nûnertiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê piştevanên me bûn lê di aliyê alîkariya maddî de tiştek nedan me.” Sîdou diyar kir ku karê teknîkî û amadekariyên şahiya Newrozê ji aliyê Die Linke û Komeleya Dêrsimê hatine kirin.

Endamê komîteya amadekar Fayad Osman rexne li helwesta KOMKARê girt û got, “piştî Kemal Burkay vegeriya Turkiyeyê êdî KOMKAR bi me re tevlî çalakiyan nabe.”

### “Sala bê em saziyên nêzî PKKê venaxwînin”

Di vê navberê de hin kesên ku xwe weke alîgirên PKKê didan nasîn, wêneyên Abdullah Ocalan û alayên PKKê bilindkirin û heya ku çûn ser dikê. Endamekê komîteya amadekar ku nexwast navê wî bê nivîsandin, got, “Em ê sala bê rê nedin ku sazî û komeleyên girêdayî PKKê bi me re tevlî bernameyê bibin.”

Endamekê PDKê jî nerazîbûna xwe anî ziman û got, “Bi hîç rengekî em sala 2013yê bi aligirên PKKê re Hefteya Kurdî amade nakin. Sala bê em ê bi serê xwe organîze bikin.”

# Li Brîtanyayê jiyana jineke Kurd kete pirtûkê



Elif Şafak wêneyê xwe daye ser berga pirtûkê, lê wek Îskender

**London (Rûdaw) -** Keçeke ciwan ya Bakûrê Kurdistanê ji jiyana xwe ya nexweş ji gundê xwe rizgar dibe û bo vedîtina jiyaneke nû diçe Ewropa, lê ew li wir jî dibe qurbana kuştina ser namûsê.

Nivîskara Tirk, Elîf Şafak çîroka vê keça Kurd kiriye bingeha romana xwe ya nû "Îskender", li Londonê jî navê pirtûkê bû Honour ango Namûs.

Di vê romanê de navê keça Kurd Pembe ye, ew zû ji jiyana gundîtiya Kurdistanê direve û bere xwe dide Birîtanya, lê temamê çîrokê bi diyardeya kuştina ser namûsê hatiye girêdan.

Şafak di vê pirtûkê de hewl dide vê yekê bigihîne xwendevanê Birîtanî ku jiyana van keçan girêdayî şerefa bav û birayên wan e.

Navê dayika Pembe, Nazê ye û keçeke wê ya din jî heye bi navê Cemîle. Tevî nasandina karekterên nava romanê, pişt re çîroka trajedîk ya Pembe dest pê dike dema ku bi xortekî re dizewice û diçe Stenbolê û paşî tevî mêrê xwe berê xwe didin Londonê.

Şafak hewl daye çîroka Pembe bi şêweyekê vebêje ku di salên 1990î de pêkhatiye. Ew diyar dike ku dema Pembe û zilamê xwe digîhin Londonê, asê dibin. Mêrê Pembe ku navê wî Adem e, ligel jineke din peywendiya dildariyê çêdike û paşî Pembe jî peywendike evîndariyê ligel zilamekî Yûnanî çêdike.

Paşî çîrok tê ser behsa evîndariya Pembe û wî mêrê Yûnanî ku bi şêweyekî nehênî hevdu li salonên sînemayan dibînin. Herdu xeyala wê rojê dikin ku bigîhin hev. Lê rojekê, birayê Adem ku navê wê Tarik e wan dibîne û rasterast vê yekê ji kurê Pembe yê, Îskender re dibêje. Pembe gellek ji kurê xwe hez dike û di dema zarokatiyê de bi navê "Sultanê min" bangî wî dikir. Lê di dawiyê de ev kur jiyana dayika xwe bidawî tîne.

Nivîskara vê pirtûkê bi rêya vegotina çîroka Pembeyê hewldide vê yekê bo xwendevanên Rojavayî ronî bike ku keçên Rojhilatî hertim pirsa şerefê li ser wan e û ev tişt çarenivîsê jiyana keçan diyarî dike.




*Jêder: Ji rojnameya Financial Times a brîtanî*

Çalakvana jinan li Norwecê Kwêstan Gadanî:

# Kurd di destdirêjiya seksî de di rêz yekê de ne

**Norwec (Rûdaw) –** Çalakvana Kurd Kwêstan Gadanî dibêje niha bi çend çalakvanên din yên Kurd re li Norwecê bo komkirina jinên Kurd di bin sîwanekê de bi projeyekê ve mijûl in. Herwiha dibêje mêrên Kurd li Norwecê di destdirêjiya seksî de, pileya yekê girtine.

Kwêstan Gadanî ku ji rojhilatê Kurdistanê ye, di sala 1992yê de berê xwe daye Norwecê, ew berê endama PDK-Îran bû, gava berê xwe da Norwecê jî tevlî rêxistinên jin û penaberan bû.

Bawernameya Kwêstan Gadanî a beşê kîmyayê heye û niha jî dixwaze doktora biyolojiyê werbigire, lê aliyê xwe yê mirovperwer ji bîr nekiriye û beşekî zêde ji wextê xwe bo alîkariya jinan veqetandiye. Ji ber ku karê wê bêtir wergerandin bû bo penaberên ku tên Norwecê, lewma haya wê ji pirsgirêkên jinên Kurd li derve çêbûye.

Kwêstan bêtir li derveyî rêxistinên jinan, wek çalakvaneke jinan kar dike û derbarê rêxistinên jinên Kurd jî li derve dibêje: "Ti rêxistineke serbixwe ya jinên Kurd li Norwecê tune, yên ku hene jî bi awayekî ji awayan girêdayî partiyan e."


Wêne: Rûdaw

Kwestan Gadani

### "Nifşê nû zûtir întegre dibe"

Kwêstan Gadanî, pirr zû tevlî civaka Norwecî bû, nemaze destpêka karkirina wê bi wan saziyan re bû, ku li ser wê yekê dixebitin kesên ku nû tên Norwecê, hînî jiyana wir bikin.

Derbarê têkilbûna Kurdên ku li Norwecê dijîn, Kwêstan Gadanî dibêje: "Yên ku li Kurdistanê bi karê siyasî ve mijûl bûn, baştir hînî jiyana Norwecê dibin, lê hin kes jî hene ku xwendevan in, lê her bi aqilê rojhilat diramin. Kesekî ku bixwaze li wir bixwîne yan demeke dirêj bimîne, nikare bêyî guncandin bijî, nifşê nû baştir hînî jiyana vir dibe."

Pirrî caran Kurd dibin manşeta medyaya ewropî, nemaze aliyê wan yê tal; mînak heya niha çend jinên Kurd li Ewropa ji aliyê mêrên wan ve bi hênceta parastina namûsê hatine kuştin.

Gava Kwsêtan dema nûçeyên wiha dixwîne pirr dilteng dibe û dibêje: "Ji bilî kuştinê, meseleya destdirêjiya seksî ji aliyê mêrên Kurd pirr zêde ye, Kurd li Ewropayê li pêşiya hemû miletên din in di warê destdirêjiya seksî de."

### "Pirsgirêkên jinên Norwec û Swêdê jî hene"

Navbirî hest nake di tu warekî de jinên Kurd li pêşiya jinên Norwec û Swêdê bin, lê dibêje pirsgirêkên wan jî hene. Ew paneleke rêxistina jinan a Partiya Kar a Norwecê wek mînak tîne, ku qala wê yekê kirine ji ber çi heya niha jinek nebûye wezîra derve ya Norwecê.

Bi dîtina Kwêstan li Norwecê jî, tevî azadiya ku ji jinan re heye, lê heya vêga jin negihiştine asta mêran: "Jinên Norwecê wek mêran kar dikin, lê mafê jinan li wir ji mêran kêmtir e. Li wir fermandariyek bi navê wekhevî, kar bo wekheviya navbera jin û mêran dike, ew jî belge ye ku jin û mêr ne wek hev in."

### "Norwec berê xwe dide pêkanîna malbatê"

Heya niha jî wiha tê dîtin ku malbata rojhilatî ji xelekeke pêwendiyên civakî yên pirr xurt di navbera jin û mêr û zarokan de pêk tê, lê di civaka Ewropayê de ev pêwendî nînin. Lê Kwêstan dibêje niha civaka norwecî berê xwe daye pêkanîna malbatê. Dema ku ew hatiye Norwecê pirr kêm dîtiye ku du xwendekar dizewicin: "Lê vêga bi awayekî pirr nûjen malê ava dikin."

Bi baweriya Kwêstan, derketina hin yasayên taybet bi rewşa kesayetî jî bandor li ser zêdebûna rêjeya pêkanîna malbatê li Norwecê kir, wek mînak di dawiya 90an de yasayek derket, ku her malbatek zarokê wê hebe, hikûmet heya sê salan xerciyên xwedîkirina zarokê lixwe digire.

Kwêstan bernameya xwe ya bê bo jinên Kurd kifş dike û dibêje, "ew bi niyet in di dawiya Gulana îsal de duyem konferansa jinên rojhilatê Kurdistanê li Swêdê girêbidin."

# Diyara Nû çav ji lîga 3. re dişkêne





» Diyarbakirspora Nû di lîga amatoran de dibe şampiyon û hewl dide derbasî lîga profesyonel bibe.

Yek ji tîmên Amedê ya ku di Lîga Amatoran de di grûba 2.de cih digire, Diyarbakispora Nû bû lîderê grûba xwe û niha amadekariya yekem maça Play-Offê dike. Eger Diyarbakirspora Nû di vê maçê de biserkeve wê di sezona bê de tevlî Lîga 3. bibe. Serokê klûbê Îlhanli jî beriya maçê biryar da tîma xwe bişîne kampê.

Diyarbakirspora Nû hewl dide ji lîga amatoran derbasî lîga profesyonel ya 3. bibe. Lîg piştî maçekî bi dawî dibe û Diyarbakirspora Nû lîderiya lîgê garantî kir. Li gor nûçeyek rojnameya Diyarbakirsozê Serokê Klûbê Fevzi Îlhanli ragihand wê maça Play-Offê di dawiya meha Nîsanê de bê leyîstin û got, "Em ji ber lîderê lîgê ne, tenê maçekî dileyîzin."

Dawiya vê heftê Diyarbakirspora Nû ligel Siirt Gençlerbirligi dileyîze û piştî vê maçê jî lîg bi dawî dibe. Serokê Klûbê Fevzi Îlhanli ragihand wan biryar daye ku beriya maça Play-Offê leystikvanên xwe bo deh rojan bişînin kampa amadekariyê û got, "Hê ne diyar e ka wê maça Play-Offê kengê, li kû û bi kîjan tîm re bê leyîstin."

Îlhanli diyar kir ku ew ê 50 hezar TL pîrîma maça Play-Offê bidin û ji bo tevlîbûna lîga 3. çi ji destê wan bê, bikin. Îlhanli wiha axivî: "Di maçên Play-Offê de tîmên ku di lîgên xwe de bûne duyemîn bi hev re maç dikin. Em ji ber bûn lîderê lîgê avantaja me heye, em tenê maçekî dileyîzin. Hê cih û dema maçê ne diyar e. An wê dawiya Nîsanê be, an jî destpêka Gulanê. Lê em amadekariyên xwe dikin weke ku maç niha bê leyîstin. Ti pirsgirêkên leystikvanên me tune ne. Em bi leystikvanên xwe yên yedek diçin maça Sêrtê û di maça Play-Offê de jî em ê bi kadroya xwe ya as bileyîzin."

# Di 10 deqeyên dawî de 3 gol!



» Kayapinar Belediyespor 80 deqe li ber xwe da û di 10 deqeyên dawî de 0-3 maçê wenda kir û bê pûan vegeriya Amedê.

**Amed (Rûdaw)-** Tîma futbolê ya Amedê Kayapinar hefta borî li Yozgatê rastî encameke pirr xirab hat: Maç heta deqeya 80. wekhev bû, lê di 10 deqeyên dawî de tîma Yimpaş Yozgatsporê hewl dan xwe û sê gol li ser hev avêtin qeleya Kayapinarê.

Tîma futbolê ya Amedê Kayapinar Belediyespor a ku di Lîga 3. a Spor Toto de cih digire di vê sezonê de bû du car ku bi encameke balkêş têkdiçe. Têkçûna pêşî li hemberê Darica Gençlerbirligi standibû û 4-0 têkçûbû.

Hefta borî roja 31ê Adarê jî li Yozgatê di 10 deqeyên dawî de sê gol jê re hat avêtin û maçê 3-0 wenda kir û pûan ji dest bir.

Kayapinar Belediyespor di tabelleyê de di rêzên xetere de cih digire û di 7 maçên dawî de performanseke baş nîşan dabû: 4 serkeftin, 2 wekhevî û yek jî têkçûn, bi giştî 14 pûan standin.

Hefta pêşiya me tîma Kesk û Zer a Amedê wê di saheya xwe de ligel Darica Gençlerbirligi bileyîze.

Kayapinar Belediyespor niha di rêza 15.de cih digire û 33 pûanên wê hene.

# Birayetî li Tirkiyeyê kampê vedike



Berpirsê tîma tenîsa ser maseyê ya Birayetî ya Herêma Kurdistanê, Qelender Nesredîn diyar kir tîma Birayetî wê kampeke rahênanê li Tirkiyeyê veke.

Qelender Nesredîn ji AKnewsê re got tîma wan wê roja 6ê Nîsanê, bo vekirina kampeke rahênanê ber bi Tirkiyeyê ve birêkeve.

Nesredîn, diyar kir "em xwe bo yariyên tenîsa ser maseyê ya Îraqê amade dikin û pêwîstiya me bi vê kampê heye. Şandeya tîma Birayetî ji 4 lîstikvan, rahênerê tîmê, berpirsê wê û endamekî klûbê pêk tê."

Berpirsê tîma Birayetî got, ligel 3 lîstikvanên nû girêbest îmze kirine û wê ew kes beşdarî tîmê bibin.

## Canê amadekariyên albumeke sê zaravayî dike

*Hunermend Canê ku bo pîrozkirina Newrozê û sazkirina konsertan çûbû Başûrê Kurdistanê, niha mijûlî amadekirina albûmeke nû ye. Li gor Canê, stranên albuma wê ya nû wê bi hersê zaravayên kurdî, kurmancî, soranî û kirdî (zazakî) bin.*



# Hunermend Aslîka Qadir:

# Rewşa Kurdan li Ermenistanê niha gellekî xirab e

*Hunermenda kurd ya ji Ermenistanê û xwediya strana `Welatê me Kurdistan e`, Aslîka Qadir di sala 1945an de li gundê Elegezê, ji dayik bûye. Xwendina xwe li gundê Elegezê qedandiye, bo zanîngehê çûye bajarê Yerîvanê. Şeş salan wek pispora zimanê ermenî û farisî kar kiriye, herwiha demekê li wezareta rewşenbîrî ya Ermenistanê kar kiriye.*

*Destpêka wê ya hunerî vedigere sala 1966ê dema strana `Welatê me Kurdistan e` li radyoya kurdî li Yerîvanê got. Aslîka îsal bo cara yekê hat Başûrê Kurdistanê, cara yekê Kurdistana azad dît, ku ev jî bi bangewaziya şaxa Dihokê ya Yekîtiya Nivîskarên Kurd pêk hat.*



Wêne: Rûdaw

Aslîka Qadir

**Rûdaw: Te çend konser li Kurdistanê saz kirin?**

**Aslîka Qadir:** Min roja 14ê Adara îsal bi helkefta bîranîna rizgarkirina bajarê Dihokê û jidayikbûna Barzaniyê nemir ahengek li parka Azadî li Dihokê saz kir. Herwiha şeva 15ê Adarê min ahengeke din li salona Yekîtiya Nivîskarên Kurd bo rewşenbîr û xelkên sivîl saz kir. Di Newrozê de min ahengek li Zaxo, di 21ê Adarê de jî du aheng li komelgehên Şarya û Xanikê saz kirin.

**Destpêka te ligel karê hunerî çawa bû?**

Li gundê me Elegez, gellek rewşenbîr û zanayên Kurd hatin dinyayê û xizmeta huner û çanda kurdî kirin. Dema temenê min 8 sal bûn, min zêde guhdariya stranên kurdî dikir û arezûya strangotinê jî wê demê li cem min çêbû. Bavê min bi xwe jî gellek bandor li ser min kiriye, wî jî gellek xweş stran digotin. Di wê demê de apê min ji aliyê dewletê ve hatibû dûrxistin bo bajarekî dûr, lewma bavê min jî herdem stran davêtin ser wî birayê xwe, wî dixwest ez jî stranan bêjim lê min nedikarî wê demê wek bavê xwe bêjim.

**Serhatiya te ligel radyoya Yerîvanê bi çi awayî bû?**

Gava ez li zanîngeha Ermenistanê xwendekar bûm, radyoya kurdî li Yerîvanê li tenişta cihê zanîngeha min bû, lewra bi berdewamî min serdana wê dikir. Wê demê gellek behsa Mele Mistefa Barzanî dihat kirin, her kesekî Kurd û şoreşa kurdî di Barzanî de didît. Wê demê hunermendê Kurd Egîdê Cimo, carekê guhdariya dengê mir kir, dû re daxwaz ji min kir ku stranan bêjim û ji min re got "dengê te gellekî xweş e."

**Strana "Welatê me Kurdistan e" bo min xwedî wateyek mezin e.**

**Di kîjan salê de te cara yekê stran gotin?**

Cara yekê di sala 1964ê de, di bîreweriya hunermendekî ermenî de min du stranên kurdî bi navên `Heta ez hebim` û `Kemençe` gotin. Di wê demê de koma hunerî ya muzîka Ermenistanê û guhdarên wirde kêfa xwe gellek ji dengê min re anîn, wan daxwaz ji min kir ku karê xwe yê hunerî bidomînim û stranan bêjim. Dû re di wan salan de min 20 stran li radyoya Yerîvanê tomar kirin.

**Çend stran û albûmên te hene?**

Heya niha 3 albûmên min hene, albûma çaran jî di destê min de ye û tê amadekirin. Albûma min ya nû ji 13 stranan pêk tê, dezgehek yan aliyek sponseriya min bike wê bê belavkirin, lê heya niha min navê albuma xwe ya nû diyar nekiriye. Ez di karên xwe de bêtir girîngiyê didim stranên hunermendên berê yên Kurdên Ermenistanê û pirraniya awazên vê albûmê ji aliyê hunermend Egîdê Cimo ve hatine danîn. Di demeke nêzîk de şîrketa `Vîn Production` dê klîpelê ji bo min çêbike.

**Kîjan strana te xwedî cihek taybet e li cem te?**

Strana `Welatê me Kurdistan e` bo min xwedî wateyeke mezin bû, di sala 1965ê de min ew stran gotiye, herwiha wê çaxê dema şoreşa kurdî bi serokatiya Barzaniyê nemir bû ku bandoreke mezin li min kir, lewma min jî ew stran got. Herwiha wê demê wê stranê di nav Kurdên Ermenistanê de gellekî cihê xwe girt, armanc jî piştgiriya Kurdên Ermenistanê bo şoreşa kurdî bû da ku Kurd jî bizanin ku welatekî wan heye û navê wî Kurdistan e. Di demeke nêzîk de ez ê wê stranê jî bikim klîp, derhêner Hisên Hesen wê bi karê derhêneriyê bike û Yekîtiya Nivîskarên Kurd li Dihokê wê hemû xerciyên klîpê bide.

**Siyaseta wê demê ya Sovyetistanê ti pirsgirêk bo karên te yên hunerî derxistin?**

Bêguman di wê demê de azadiya ku me dixwest li Sovyetistana berê nebû, wan digot `miletên ku li Sovyetistanê dijîn hemû bira ne û welatekî wan heye` lewma kesî nedikarî behsa welatekî din bike. Saziyên sîxuriyê jî gellek bi nehênî li ser babetên wisa yên siyasî kar dikirin, ji ber wê yekê me ew strana `Welatê me Kurdistan e` bi awayekî nehênî tomar kir û piştî hingî me belav kir.

**Civakê çawa berê xwe dida te ku tu keçeke stranbêj bûyî?**

Wek malbat û civaka kurdî li Ermenistanê gellek pêşwaziya karên hunerî dikin, ti astengî ji aliyê malbatê ve ji min re nehatin çêkirin.

**Ji ber çi hatina te bo Kurdistana azad dereng ma?**

Min jî gellek dixwest ku ji zû vê serdana Kurdistana azad bikira, heya gellek kes ji gellek qorziyên cîhanê hatine Kurdistanê, lê mirov pariyê herî xweş dihêle dawî, lewma pariyê min yê ji hemûyan bi tahmtir ev serdan bû.

**Vêga rewşa Kurdan û karên hunerî li Ermensitanê çawa ye?**

Piştî hilweşandina Sovyetistanê, desthilat ket destê nijadperestên Ermenî, gellek dezgehên kurdî wek rojname û komeleyên hunerî neman. Ez dikarim bêjim rewşa jiyan û xebata Kurdan li Ermenistanê vêga gellekî xirab e û nijadperest Ermenistanê wek welatê xwe dibînin, lê ji ber ku pirraniya Kurdan li gundan dijîn, li gundan Ermenî nînin, lewma ev jî bûye sedem ku ziman û çanda kurdî di nav Kurdan de bê parastin û ji nav neçe û heya radeyekê jî pêşveçûnek lixwe girtiye.

**Rewşa hunera kurdî çawa dibînin û kartêkirina stranên biyanî li ser yên kurdî heye?**

Vêga gellek ciwanên me ji stranên kurdî bêtir girîngiyê didin stranên biyanî. Ez gellek caran dibînim ku ciwanên me guhdariya stranên Tatlises dikin, ez ji vê yekê aciz dibim, ji ber ku Tatlises çanda Kurdan asîmîle dike û ji nav dibe, herwiha hiştiye çanda tirkî di nav civaka me de cihê xwe bigire, lewra hêviya min ji ciwanan ew e ku şiyar bin û nehêlin çanda kurdî bikeve bin kartêkirina çanda Tirk, Ereb û Farisan.

***Hevpeyvîn: Ehmed Êmînkî***

» Nabe dewlet gotûbêjan ligel PKKê bike û divê desteya aqilmendan veke

» Pirsa Kurd êdî bi partiyekê çareser nabe

» Pirsa Kurd girîngtirîn pirsa Tirkiyeyê ye


Wêne: Rûdaw

Serokê Partiya Gel a Komarî (CHP) Kemal Kiliçdaroglu

# Serokê CHPê Kemal Kiliçdaroglu ji Rûdawê re: Gotûbêj bi PKKê re berdewam in

Li Enqereya paytext û navenda siyasî ya Tirkiyeyê, li odeyeke parlementoya Tirkiyeyê rûniştim. Yê ku li hemberî min jî rûniştî ye, li cem raya giştî ya Tirkiyeyê wek “marê bin kayê” tê binavkirin. Pirr bi hûrî guhdariya pirsên me dike û bersivê dide. Ev kes serokê Partiya Gel a Komarî (CHP) Kemal Kiliçdaroglu ye. Digel hebûna hejmareke zêde ya siyasetvanên xwedî tecrûbe di nav CHPê de, lê Kiliçdaroglu yê ji Dêrsimê karîbû di kongreya 26ê ya heyva borî de careke din bibe serokê giştî yê CHPê.

Kiliçdaroglu karîbû di wê kongreya awarte ya CHPê de, dawî li minawereya baskê netewperest ê Kemalîst di nava CHPê de bîne, êdî ew ji wê rojê pêde serokê bê hevrik yê CHPê ye. Her çiqasî medyaya tirkî Kiliçdaroglu yê Kurd û Elewî wek “marê bin kayê” wesf dike, lê navborî bê ku beramberê wî hest pê bike, diteqe. Kiliçdaroglu li Dêrsimê li Bakurê Kurdistanê ji dayik bûye, lê ji hemûyan bêtir ji ber komkujiya Dêrsimê bû armanca rexneyên serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan. Berovajî dema xwe ya borî êdî Kemal Kilîçdaroglu nasnameya xwe ya netewî û mezhebî venaşêre, ligel ku naxwaze di siyasetkirinê de Kurdbûn û Elewîbûna xwe beloq bike, lê li hember înkarkirina wan bêdeng û bê helwest nasekine. Kemal Kiliçdaroglu zimanê kurdî fêm dike, lê nikare bi zelalî pê bipeyve. Lewma Rûdawê pirs bi kurdî jê kirin û wî jî bi tirkî bersiv da.

**Du gerên li ser hev e ku CHP dibe partiya mezin a opozisyonê li parlementoya Tirkiyeyê, lê çavdêr dibêjin ku CHP ji ber pirsgirêkên navxweyî nekariye rola opozisyonê bi tekûzî bilîze. Gelo wek tê xwestin hûn bi rola opozisyonê rabûne?**

**Kemal Kilîçdaroglu:** Demekê di nava CHPê de dengên cuda derketin, vê yekê wisa kir ku şîroveyek derkeve ku CHP nikare rola xwe ya opozisyonê bilîze. Lê îro, bi taybetî piştî kongreya herî dawî, ev gotin nema. Em bi hev re dengê xwe bilind dikin û bi hev re jî xebatê dikin ku li parlementoyê dijbereyeke xurt bin.

**Ew kêşeyên ku CHP ji ber wan dinale, bingeha wan gengeşeya navxwe ya partiya we ye, yan ji derve ji bo we tên çêkirin?**

AKPê ya desthilatdar xwedî medyayeke xurt e. Lewma gava di nava CHPê de gotûbêjeke pirr sade jî tê kirin, wiha nîşan didin ku CHP rastî hevrikiyên tûj hatiye. Medya bi vî karî radibe, me jî baş ji vê rastiyê fêm kiriye. Ji aliyê xwe ve em wê medyaya bihêz a AKPê li ber çav digirin û hewl didin ku ew gotûbêjên ku di nav partiyeke sosyal demokrat de asayî ye bên kirin, tesîrê li derve nekin û bi xirabî neyên xwendin. Em hewl didin rengvedana wan li ser medyaya AKPê nebe.

**CHP partiyeke sosyal demokrat e, lê nemaze di van salên dawî de siyaseta neteweperestî tê de serdest bû. Gelo ji niha û bi şûn de emê CHPya demokratîk bibînin, yan wek berê wê bangewaziya demokratiyê bike û di pratîkê de jî neteweperestiyê bimeşîne?**

CHPê ji berê bêtir sosyal demokrat dibînin. Binêrin di çend rojên bê de civîna partiyên sosyal demokratên vê deverê li Stenbolê dikin. Di Nîsana bê de jî civîna hemû wan partiyên sosyal demokrat dikin ku bi “bihara erebî” karîger bûne. Yanî bi baweriya me ne tenê welatê me, hemû dever û Afrîka û gelên bindest pêdiviya wan bi sosyal demokrateke cewherî ye.

**Di hevpeyvîneke vê dema dawî de we got ku hûnê ji bo postê serokkomariyê di sala 2014ê de berbijarekî xwe destnîşan bikin. Gelo ew berbijar hûn dibin, an kesekî din?**

Na. Eger em bikarin kesekî berbijar bikin ku dengê navenda rastgir jî bidest ve bîne, bi baweriya me ew kesê ku em berbijar bikin wê bi ser keve. Em hewl didin namzetekî rewşenbîr û hemdem, ku bikare pêwendiyeke baştir ligel cîhanê girêbide, girêdayî destûrê be û baweriya wî bi serweriya yasayê hebe bikin serokkomar.

**Di bala we de navekî taybet bo vî postî heye?**

Heya niha navekî diyarkirî tune.

**Di heman hevpeyvîna ligel rojnameya AKŞAMê de hûn dibêjin ku hûn amade ne bo çareserkirina pirsa Kurd postê xwe bikin qurbanî. Hûn dixwazin bo çareserkirina pirsa Kurd çi bikin?**

Tenê em dikarin pirsa Kurd çareser bikin. Wek partiyeke sosyal demokrat tenê em in ku dikarin pirsa Kurd çareser bikin. Ji ber ku em dixwazin li gor demokrasî, azadî û mafê mirovan vê pirsê çareser bikin. Bi baweriya me ev pirs tenê bi çekan nayê çareserkirin. Di vî alî de me pêşniyarên çareseriyê pêşkêş kirin, lê AKPê guh neda van pêşniyaran. Me daxwaz kir ku li parlementoyê komisyona lihevkirinê bê çêkirin û hemû partiyên siyasî bi nûnertiyeke wekhev tê de cîh bigirin. Herwihw me pêşniyar kir li derveyî parlementoyê komisyona “mêrên aqilmend” bê çêkirin û gotûbêj bi rêya vê komisyonê bên kirin. Bi baweriya me eger wiha bibe, pirs çareser dibe. Lê rêzdar serokwezîr dibêje nexêr ez li hember van pêşniyaran girtî me û pêşniyarên we pirsê çareser nakin. Bi baweriya me çareserkirina pirsa Kurd, ku girîngtirîn pirsa Tirkiyeyê ye, bi proje, biryar û xwendina CHPê bo demokrasî, azadî û mafê mirovan derdikeve holê.

**Piştî ku hûn bûn serokê CHPê, vebûnek ji aliyê partiya we ve derbarê pirsa Kurd de tê dîtin. Ji bo vê armancê berî hilbijartinên 12ê Hezîrana borî we konferansa ‘Lêgerîna çareseriya pirsa Kurd’ li Wanê girêda. Lê heya vêga şûna tiliyên CHPê di vî alî de ne diyar e?**

Di vî alî de helwesta me ron û eşkere ye. Vê pirsê ew yek derbas kiriye ku tenê bi partiyekê bê çareserkirin. Bona vê yekê me par li Wanê konferansa lêgerîna li dû çareserkirina pirsa Kurd saz kir. Me got werin bila li parlementoyê komisyona lihevkirinê bê damezrandin û hemû partiyên di parlamentoyê de bi rêjeyeke wekhev tê de beşdar bin û ji bo çareserkirina pirsa Kurd mejiyê hevbeş pêk bînin. Me daxwaz kir ku nûnerên partiyên parlementoyê bo çareserkirina pirsa kurd ligel hev li ser maseya diyalogê rûnin, ne ku bo çaresernekirinê. Dîsa me got bila li derveyî parlementoyê “komisyona mêrên aqilmend” dirust bikin û nûnerên partiyên siyasî li komisyona lihevkirinê wan kesan hilbijêrin ku di wê komisyonê de cîh digirin, da ku herin gotûbêjan ligel aliyên têkildar bikin û herin nava xelkê û bizanin di vî warî de daxwaza çi dikin. Dûre jî di vî alî de komisyona lihevkirinê eger pêwist be yasayên wê serast bike û eger pêwist bike biryara îdarî jê re derxe. Bi baweriya me helwest û xwendina me bo çareserkirina pirsa Kurd û rewşa Tirkiyeyê baş e.

**Di vî warî de bi awayekî eşkere hûn çi pêşniyar dikin?**

Eger hikûmet amade be, pirr bi hêsanî dikarin li parlementoyê komisyona çareseriya pirsa Kurd ava bikin, bi tevlîbûna MHP, BDP, CHP û AKPê û eger pêwist be jî partiyên derveyî parlamentoyê jî tê de beşdarî bikin û gotûbêjên derbarê çawaniya çareserkirina pirsa Kurd bikin û bo çareseriyê li ser maseyekê rûnin.

**Di 01.05.2012ê de proseya nivîsandina destûra nû ya Tirkiyê li parlementoyê dest pê dike. Diyar e ku AKP ne amade ye mafê xwendinê bi zimanê dayikê pesend bike, eger AKPê pêkut be li ser vê helwestê, CHP wê çi bike?**

Her partiyeke di nava komisyona destûrê de eger li ser maddeyeke diyarkirî nerazîbûnê nîşan bide yan bixwaze nêrîna xwe ferz bike, êdî prose radiweste. Tenê ew madde bo dengdanê pêşkêşî parlementoyê tên kirin ku ji sedî 100 peyman li ser wan hatiye kirin. Lewma divê endamên komisyonê li ser her maddeyekê bi tevahiya dengan tifaqê bikin û li hev bikin.

**AKP zêdeyî 9 salan e desthilatdar e û bangewaziya çareserkirina pirsa Kurd dike, lê bi dîtina pirraniya Kurdên li Tirkiyeyê vê partiyê gaveke berçav di vî alî de ne avêtiye. Di baweriya CHP de, AKP derbarê çareserkirina pirsa Kurd de rastgo ye?**

Na, AKP ne rastbêj e. AKP zêdeyî 9 salan li jêr dirûşma “vê pirsê çareser dikim” kar dike, lê pirs çareser nebûye.

**Hûn wek CHP çavlirêya AKPê dikin ku derbarê çareserkirina pirsa Kurd de gavan bavêje, ew jî gavan navêje. Gelo hûn bi wê yekê nefikirîne ku însyatîfa çareserkirina pirsa Kurd bigirin destê xwe?**

Dibêjim dibe ku kêmasî di pêşniyarên me de hebin, an dibe ku

# Rûdawê bi kurdî pirs kirin, Kiliçdaroglu jî bi tirkî bersiv dan

çewt bin jî. Lewma em dibêjin hûn pêşniyaran bikin, bila em piştgiriya we bikin! Lê ti pêşniyareke wan tine. Em daxwaz dikin di demeke herî zû de pirsa Kurd bê çareserkirin, pêşniyarên me yên pirr vekirî hene, dibe ku ne bi dilê hikûmetê bin, wê çaxê bila hikûmet pêşniyaran bike, emê piştgiriya wan bikin.

**Qala vebûna CHPê berbi civata Fethullah Gulen de tê kirin. Ev bo lawazkirina AKPê ye, yan hûn dixwazin ligel grûpa Gulen pirsgirêkên Tirkiyeyê û pirsa Kurd çareser bikin?**

Em ligel ti grûpan vebûneke taybet nakin, lê bi şertê siyasînekirina olê rêza hemû civatan digirin. Her mirovek dikare rîtualên xwe peyrew bike, em rêza vê yekê digirin, lê siyasîkirina olê çewt dibînin. Derbarê cemaeta Gulen de, ku cemaeteke olî ye, heya wî cîhê ku siyasetê nekin ti kêşeya me bi wan re nîne. Yanî em ji pencereya baweriyê li mijarê dinêrin, ne ku ji pencereya baweriya cemaetê.

**Hûn Kurdekî elewî û ji Dêrsimê ne. Di vê dema dawî de gotûbêjeke berfireh derbarê komkujiya Dêrsimê di sala 1937ê de hat encamdan, ku ew komkujî di heyama desthilatdariya CHPê de hat pêkanîn. Çawa hûn dikarin balansê rabigirin, nemaze gava Erdogan xwest vê pirsê li dijî we tev bide û CHPê gunehbar bike?**

CHPê qet negotiye bila lêkolîn di vî alî de neyên kirin. Berevajî dibêje ji ber çi arşîf nayên vekirin. Divê arşîf bên vekirin. Beşekî arşîfan hatine vekirin, em bangewaziya vekirina beşê din jî dikin. CHP dixwaze ev mesele nebe meseleya siyaseteke rojane, lê pêkut e li ser eşkerekirina rastiyan, ew jî bi sazkirina lêkolîneke dîrokî. Daku em bizanin rastiya bûyerê çi ye, çi qewimî ye, pêwist e pisporên dîrokê lêkolîneke serbixwe amade bikin. Aliyekî din yê vê mijarê jî, serokwezîr bi hesta wê yekê ku li Dêrsimê mirov hatine kuştin, vê mijarê tev nade, lê Erdogan dixwaze bizane eger pirsa Dêrsimê tev bide, çawa dikare CHPê asteng bike. Hemû bendewariya serokwezîr ev e. Eger Erdogan bi bûyerên Dêrsimê û mirovên ku li wir hatin kuştin dilgiran be, divê bo kuştina wan 34 kesan jî ku li Roboskê jiyana xwe ji dest dan dilgiran be! Gelo Erdogan derbarê Roboskê de tiştek got? Nexêr, qala tiştekî nekir. Bo vê yekê kesek li hember me heye ku hewl dide karesatên dema borî bikar bîne û wan vêga bike mijareke siyasî. Navê wî kesî jî Erdogan e. Erdogan hewl dide karesatan bikar bîne û di berjewendiya xwe de birînan nû bike. Bila rastiyan kifş bike, di vî alî de ti gumana me nîne. Min qala aliyekî din ê vê mijarê kir, lê Erdogan tiştekî di vî alî de nabêje. Hejmareke zêde ji xelkê Dêrsimê hatine veguhastin bo deverên din û zevî wergirtine, lê dûre zeviyên wan ji wan hatine standin. Min pêşniyar kir ku careke din zeviyên wan bidin wan. Gelo zeviyên wan dane wan? Gelo Erdogan di vî alî de tiştek got? Na. Erdogan tenê dixwaze êş û karesatan di berjewendiya xwe de bikar bîne.

**Hûn ji bajarê Dêrsimê ne, rasterast yan ne rasterast we êş û bextreşiya Dêrsimê kişandiye. We nedikarî berî ku Erdogan vê pirsê tev bide, însyatîfê bigrin dest û pirsê tev bidin? Ji ber çi we wiha nekir?**

Di baweriya min de ne rast e ku siyasetvanek tiliya xwe bixe nav wê mijarê. Ew mijar taybet e bi pisporên dîrokê. Wek mînak qala bûyera Roboskê dikim, ji ber ku mijareke germ e û di heyama min de rû daye, lê Dêrsim berî dema me çêbûye û nemaze ku hêjî hemû arşîfên wê nehatine kifşkirin. Bi vekirina arşîfan re bûyera tarî ronî dibe, haya me ji rastiyan çêdibe. Hesta tolstandinê li cem me tune, eger wek mirov kezeba we dişewite, rastiyan kifş bikin û bêjin xwezî neqewimîba. Lê wek min got, pêwist e hemû kitekitên wê pirsê bên kifşkirin. Rast e, nabe dîroka Dêrsimê tevlî siyaseta îro bê kirin. Vê yekê tenê bo Dêrsimê nabêjim lê bo bûyerên 1915ê jî heman tiştî dibêjim. Pêwist e pisporên dîrokê biryarê di vî warî de bidin. Binêrin li Fransayê dadgeha destûrî biryar di vî alî de da, yanî mijar girêdayî dîroknivîsan e.

**Hûn li Dêrsimê ji dayik bûne û li ser Dêrsimê tên hesabkirin. Gelo xelkê Dêrsimê ji bo ku mafên wan li wan bên vegerandin zextan li we nakin?**

Na, ti zext li ser min nînin, ji ber ku xelkê Dêrsimê pirr baş ji min fêm dikin, ez jî pirr baş ji wan fêm dikim. Tiştê Erdogan dike ne ji bo ronîkirina bûyereke tarî ye, lê ji bo keysbazî û bikaranîna bûyerekê ye di berjewendiya xwe ya siyasî de. Lewra her kesek ku hişê wî hebe dizane çi li pişt helwesta Erdogan e. Binêrin, di valakirina bûyera Sîwasê de ku tê de 35 kesan jiyana xwe ji dest dan, Erdogan çi dibêje? Dibêje "Xêrê jê bibînin." Bo valakirina dosyayekê ji ber derbasbûna dema yasayî, Erdogan dibêje xêr tê de heye. Lê Erdogan bo bûyera Dêrsimê dibêje xemgîn im. Lewma ne mimkun e ku xelkê Dêrsimê jê bawer bin. Eger agir bigire ser tevahiya Dêrsimê, Erdogan ji kêfan geş dibe!

**Eşkere bû ku dezgeha MITê ligel PKKê çend salan gotûbêj kirine. Bi baweriya we pêwist e dezgeha MITê gotûbêjan ligel PKKê bike, yan dezgeheke din ya dewletê?**

Li hemû dinyayê dezgehên sîxuriyê gotûbêjên bi vî rengî dikin, lê ev gotûbêj heya dawî nehênî dimînin, gava eşkere bûn pêwist e kesên ku gotûbêj kirine ji karên xwe bên avêtin. Lê li Tirkiyeyê tiştekî wisa rû neda, ji ber ku rênîşanên vî karî rasterast ji Erdogan wergirtibûn. Berpirsê yekê yê vî karî serokwezîr bû, lê Erdogan nexwest vê berpirsyariyê bigire ser stuyê xwe. Ji ber ku eger li dadgehê bergiriya şêwirmendê giştî yê MITê bike, tê wateya ku bergiriya xwe kiriye.

**Pirsa min ew bû gelo li gor we baş e ku gotûbêj bi PKKê re bi rêya MITê bên kirin, an bi rêya dezgeheke din?**

Na, ne rast e. Desthilata sivîl. Min berî vêga çi got? Min got divê li parlementoyê komîteyeke ji hev fêmkirinê hebe. Pê re jî desteyeke mêrên aqilmend hebe. Ew mêrên jîr diçin vî karî dikin. Dewlet destê xwe naxe vî karî de. Dewlet nabe ligel aliyên neyasayî gotûbêjan bike. Ji ber ku wê çaxê rewatiya dewletê dikeve jêr pirsiyarê. Desteya mêrên aqilmend dikare ligel hemî kesan gotûbêjan bike. Dûre tên hemû agahiyan didin desthilata fermî û komîteya parlementoyê û hwd. Pêşniyara me ewe ku hem rewatiya dewletê bê parastin û hem jî berbi çareserkirina vê pirsên kar bê kirin.



Wêne: Rûdaw

**Li gor we baş e ku careke din gotûbêj bi PKKê re bên destpêkirin?**

Qasî ku dizanim gotûbêj bi PKKê re tên kirin.

**Hûn piştgiriya vê yekê dikin?**

Meseleyeke ku agahiyên min li ser nebin, çawa piştgiriyê lê bikim.

**Hûn pêwendiyên Herêma Kurdistanê û Tirkiyeyê çawa dibînin, gelo ev pêwendî hevseng in û di xizmeta herdu aliyan de ne?**

Hejmareke zêde ji karsazên me li wir kar dikin. Dîsa pêwendî di aliyê bazirganî de pêşketî ne. Ev rê li ber pêwendiyeke saxlemtir vedike. Dîsa di navbera welatiyên Tirkiyeyê û xelkê bakurê Îraqê de pêwendiyên xizmatiyê hene, çûnûhatin heye. Lewma divê helwesta herdu aliyan di xizmeta pêşketin û bihêzkirina van pêwendiyan de be. Dîsa karsazên bakurê Îraqê tên Tirkiyeyê û hilberînê dikin. Lewra bi baweriya min divê ev têkilî bên xurtkirin.

**Eger hûn bêne ser desthilatê, bo xurtkirina van pêwendiyan hûnê çi bikin?**

Wek mînak wê çaxê em dixwazin ku karsazên me bêtir herin wê deverê û li wir hilberînê zêdetir bikin.

**Kurdên Sûriyê ji rola Tirkiyeyê derbarê Sûriya bê û mafên gelê Kurd de dilgiran. Di vî warî de hûn çi dibêjin?**

Em wekî CHP li dijî destêwerdana di karûbarên hemû welatan de ne. Helwesta me eşkere ye, lê di heman demê de em dixwazin ligel hemû cîranên me pêwendiyên me baş bin û azadî, demokrasî û mafê mirovan li wan welatan wek bingeh bên girtin. Lê em tiliya xwe naxin karûbarên navxwe yên wan welatan. Ji ber ku eger me wiha kir, em nikarin bergiriya xwe bikin, gava welatekî din bixwaze destêwerdanê di karûbarên Tirkiyeyê de bike. Lewma di vî alî de helwesta me ronî e.

**Di konferansa Wanê de we biryar da ku serdana Herêma Kurdistanê bikin, herwiha serokkomarê Îraqê Celal Talebanî li Parîsê daxwaz ji we kir ku serdana Bexda û Kurdistanê bikin. Heya niha çima we ev serdan nekirine?**

Bi kêfxweşî di demek kêrhatî de serdanan encam didim. Dawetnameyek ji rêzdar Talebanî ji min re bo serdana Bexdayê hatiye, dibe ku serdana Bexda û bakurê Îraqê jî bikim.

**CHP bi wê yekê difikire ku ofîs an nûnertiya xwe li Hewlêrê veke?**

Niha vekirina ofîsê li derveyî Tirkiyeyê kareke ku mesrefeke zêde lê diçe. Heya niha tenê li Brûkselê li cem YE nûnertiya me heye. Lê belê eger rewş baş be, em dixwazin li hemû deveran têkiliyan dirust bikin û nûnertiyan vekin.

**Îro Newroz e, peyama we di vê rojê de çi ye?**

Pirr xemgîn im ji ber bûyerên ku bi vê helkeftê li Tirkiyeyê rû dane. Newroz rojeke ku hemû civak wê qebûl dikin û wek cejnekê wesf dikin. Eger vê rojê wek cejn bi nav bikin, divê di nava xweşî û şadiyê de hev pîroz bikin, serdana hev bikin û bi gotin û mitîngan pîroz bikin. Pêwist e ji vê yekê şerm nekin. Êdî divê Tirkiye pîvanên xwe yên demokrasiyê bilind bike, divê ji raya cuda netirse. Îro têgiha qedexekirinê çend bûyerên mezin derxistine holê û rê li ber êrîşa li ser rêzdar Ahmed Turk vekirine. Xwezî ev bûyer neqewimîbana.

*Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw*

**Eger agir bigire ser tevahiya Dêrsimê, Erdogan ji kêfan geş dibe!**

**Pirsa kurd êdî bi partiyekê çareser nabe**

**Ji AKPê re dibêjim hûn pêşniyara çareseriya pirsa Kurd bikin û em jî piştgiriya we dikin**

# Birêveberê ferhenga elektronîkî ya kurdî ya herî berfireh ”Wîkîferheng”:

## *”Ez çewtiyên ferhengvanên Kurd dubare nakim”*


Wêne: Rûdaw

Husein Muhammed

Zekî Ozmen

Wîkîferheng verziyona kurdî ya ferhengên navneteweyî ya elektronîk ”Wiktionary” ye. Ew jî wek ensîklopediya kurdî, Wîkîpediya, ji malbata Wikimediayê ye ku dezgeheke xêrxwaz û belaş e. Ferheng û ensîklopediyên bi heman formê niha bi sedan zimanên dinyayê hene. Ew ji aliyê bikaranîneran ve tên nivîsîn û berfirehkirin. Wîkîferheng yek ji ferhengên pêşîn yên kurmancî bi kurmancî ye û ji sala 2004ê ve li ser înternetê ye. Ev ferhenga dîjîtal a kurdî niha nêzîkî 54 000 rûpelan di nava xwe de dihewîne û ev hejmar roj bi roj tê berfirehkirin. Her wiha di nava derdora 150 zimanên ku Wiktionary pê weşanê dike de, hejmara peyvên ferhenga kurdî niha di rêza 33. de ye. Wekî mînak, ferhenga kurdî bi hejmara rûpelên xwe li pêş ferhenga erebî ya heman formê ye. Ji aliyê din ve tê texmîn kirin ku di nav ferhengên vê malbatê de tenê rûpelên ferhenga inglîzî û ya fransî agahiyên ku li ser her peyvê tên dayîn ji ferhenga kurdî dagirtîtir in. Her wiha hejmara rûpelên ferhenga tirkî gellekî û ya farisî jî hinekî ji ya kurdî zêdetir e lê agahiyên ku ferhenga kurdî dide, gellekî ji yên di ferhengên wan zimanan de berfirehtir û birêkûpêktir in.

Yek ji hevkarên destpêkê yên Wîkîferhenga kurdî ku heta niha jî bi awayekî aktîf di nava xebata wê de ye, parêzer Husein Muhammed e.

### 1,8 milyon peyvên kurdî hatine tomarkirin

Husein Muhammed li ser destpêkerên Wîkîferhenga kurdî dibêje ku ji ber hema bêje hemû bikarhênerên Wîkîpediyayê û Wîkîferhengê (hem yên kurdî û hem jî yên bi hemû zimanên din) bernavan bi kar tînin, nayê zanîn ka kî kes in lê bi taybetî Erdal Ronahî ku piştre malpera Ferheng.org jî damezirand, gavên pêşîn di destpêkirina Wîkîferhengê de avêtine. Lê belê Ronahî piştre zêdeyî bi Wîkîpediyayê ve mijûl dibe û barê Wîkferhengê bi vî awayî dikeve ser milên Husein. Li gor Husein niha di toreya Wîkîherhengê de bi giştî 1,8 milyon peyv hatine tomarkirin û wisa pê de diçe: ”Lê ev tevahiya hemû peyvan e, ne her peyva ji yên din cuda ye. Anku peyvên serbixwe û şiroveyên wan bi hev re ew qas in. Di malperê de nêzîkî 54 hezar rûpelên serbixwe hene. Lê ev ne hejmara tevahiya peyvan e ji ber ku di her rûpelê de peyvên ku ji wê peyvê hatine çêkirin jî hatine rêzkirin. Bo nimûne, di rûpela ’dil’ de ne tenê peyva ’dil’ lê her wiha ’dildar, dilovan, dilêr, dilgiran’ û bi dehan peyvên din jî hene. Hejmara peyvên ji hev cuda ku tê de hene, bi ihtimaleke mezin di navbera 130 – 150 hezaran de ye.”

Ev gahdarî bi serê xwe dibe peyitandina wê yekê ku Wîkîferheng yek ji mezintirîn ferhengên kurmancî ye, li gor hejmara peyvên xwe. Jixwe eger ev ferheng û ferhengên adetî li ber hev werin girtin, Wîkîferheng ji ferhengên din gellekî zêdetir agahiyan li ser her peyvê dide: wateya wê, formên wê yên devokî, hevwateyên wê, dijwateyên wê, tewîn û tewandina lêkeran, etîmolojiya wê, peyvên ku jê çêbûne û herwiha wergerên wê bi gellek zimanên biyanî.




### 35 hezar hezar rûpel wî ava kirine

Husein Mohammed dibêje ku heta niha derdora 60 kesan di nava vê xebatê de cîh girtine lê belê xebata wî ya herî berbiçav e: ” Hin kesan tenê çend peyvên nû lê zêde kirine lê hin kesan jî bi hezaran rûpel afirandine yan jî nû kirine. Lê ji hemû rûpelên ku hatine çêkirin (nêzîkî 54 hezar) nêzîkî du par ji sêyan (35 hezar rûpel) ji aliyê min bi xwe ve hatine avakirin. Di ser re jî, rûpelên ku ji aliyê hin kesên din ve tên avakirin, ez wan berfireh dikim, bo nimûne etîmolojiya peyvê (eger peyda bikim) lê zêde dikim, peyvên ku ji wê peyvê çêbûne di rûpelê de rêz dikim û wê li hin zimanên din jî werdigerînim.”

Husein bi bîr dixe ku di nav Kurdan de gellek ferhengvan radibin ferhengên hev kopî dikin û ligel şaşiyên di ferhengên berê de her tiştî neqilî ferhenga xwe dikin û şaşî wisa tên dubarekirin: ”Ez bi xwe ferhengên heyî danaynim ber xwe û wan neqil nakim. Lê dema ku nivîsên bi kurdî dixwînim, her peyva ku heta niha di Wîkîferhengê de tine be, jê digirim û li ferhengê zêde dikim. Bê guman ez jî ferhengên heyî, hem yên kurdî û hem jî yên biyanî – bi taybetî erebî, farisî, tirkî, inglîzî û fransî, wek alîkar bi kar tînim lê ne ku wan neqil dikim.”

### Parêzerî jê re bûye alîkarê ferhengvaniyê

Husein Mohammed bi xwe ji hêla pîşeya bingehîn ve parêzer e û li Fînlandê dijî. Ew karê xwe yê parêzeriyê jî ji bo ferhengsaziyê wekî awantaj dibîne û dibêje ku Kurdên ji her devera Kurdistanê wî pêşî wek miwekîl dinasin û paşê jî gellek ji wan dibin dostên wî yên demdirêj: ”Bi vî awayî ez ji devok û zaravayên wan berdewam peyv û biwêjan hildidim, eger pêwîst be maneya wan jê dipirsim û wan jî di ferhenga xwe de bi cîh dikim.” Her wiha ew dîsa balê dikişîne li ser wê yekê ku vê dawiyê li ser Facebookê komeke bi navê “Zimanê Kurdî” ya pirr aktîf heye û tê de rojane bi dehan mijar tên gotûbêjkirin û wisa berdewam dike: ”Carinan ez jî awayên cuda yên devokî yên peyvekê ji wan dipirsim û bersivên wan jî di ferhengê de bi cîh dikim. Mesele, rojekê min li ser heywanê bi navê ’jûjî’ pirsî. Nêzîkî deh awayên devokî yên wê peyvê hatin. Min jî ew di rûpela ’jûjî’ de qeyd kirin.”

Ji elaqeya ji bo Wîkîferhengê, Husein gellekî razî ye: “Statîstîkên niha diyar dikin ku Kurdan Wîkîferheng vedîtiye û baweriya wan bi naveroka wê ya ciddî tê. Ji hejmara mêvan û serderan gellekî razî me lê bendewar im ku hejmara hevkarên çalak hê jî zêdetir bibe. Di navbera salên 2005 û 2010ê de min di tenêtiyeke bêsinor de ev ferheng ava dikir. Alîkar tine bûn û tevlî çend ricayan jî reklam û rapor di malper û rojnameyên kurdî de li ser wê nedihatin weşandin. Lê hingê jî baweriya min bi ferhengeke elektronîkî ya kurdî-kurdî hebû û niha dibînim ku xwendevanên kurdî jî di vê mijarê de bi min re hevbîr in.”

### Evîndariya zimanê kurdî

Em meraq dikin ka çima ew ewqas sal in bê pere ewqas wextê xwe dide vî karî û vê motîvasyona xwe bi vî rengî tîne ziman: “Ez evîndarê zimanê xwe kurdî bi taybetî û zimanan û zimannasiyê bi giştî me. Em hewceyî ferhengeke birêkûpêk ya kurdî-kurdî ne. Ne ez tenê bê pere xizmeta zimanê kurdî dikim. Herwiha avantajeke min ew e ku ez bi rêya karê xwe gellek Kurdên ji pirr deverên Kurdistanê nas dikim. Dixwazim ku ji wan devok û zaravayên kurdî baştir hîn bibim û bêje û biwêjan ji wan berhev bikim.”

### Husein Mohammed:

Husein Mohammed ji hêla pîşeyî de parêzer e. Wî ligel wê wergerî û tercûmaniya zimanê inglîzî jî li zanîngehê xwendiye û bi wan re dersên zimannasiyê jî li zanîngehê xwendine. Ew zimanên cîranên kurdî, ango erebî, farisî û tirkî û herwiha zaravayê soranî jî dizane û bi gotina wî dikare tevlî hinek zehmetiyan zazakiya nivîskî jî bixwîne. Ji sala 1995ê ve ye ku ew berdewam bi kurdî dinivîse û edebiyata dinyayê ji çend zimanan li kurmancî werdigerîne. Berê wek tercûman (bi devkî) û wergêrê bi nivîskî yê kurdî (kurmancî û soranî) xebitiye. Heta niha nêzîkî 15 pirtûkên ku wî wergerandine derketine. Her wiha wî sê ferhengên kurdî-fînî, yeke soranî-kurmancî û yeke peyvên dadnasî ya kurmancî-inglîzî jî amade kirine. Ji sala 1999ê heta 2006ê wî yekem kovara xwerû elektronîkî ya xwerû kurdî bi navê “Mehname” weşand.

# KIE: Rûdaw bêtirîn nûçeyên 'Jender' diweşîne


Hejmar 140 | Rûdaw | Jin û Civak | 13

Her cilek çîrokek wê heye

Mezopotamya

Rûdaw


Rûdaw | Hejmar 139 | Jin û Civak | 13

Du jinên karsaz û xîretkêş Gulnaz Qasimova û Gulşena Mûsayê Beşkî


Hejmar 138 | Rûdaw | Jin û Civak | 13

Berdêlê du GULÊN ZER çilmisandin!

Kampanya "Tu jî Rûdawê nas bike"

» Ji 3006 nûçeyên televizyonê tenê 26 jê nûçeyên jênder bûn

» Serokê Navenda Xatû Zîn: Medyaya kurdî kêm behsa jênder dike

**Soran Behaedîn**

Li gor rapora peymangeheke li Kurdistanê, medyaya Kurdistanê gellek kêm girîngiyê dide nûçeyên derbarê jender ango nijarên derbarê cinsiyetê de. Ev peymangeha ku çavdêriya nûçeyên 17 dezgehên ragihandinê kiriye, ragihand heftenameya Rûdaw bêtirîn nûçe derbarê jênder belavkirine.

Heftiya borî Peymangeha Kurdî bo Hilbijartinan (KIE), bi navnîşana 'çavdêrîkirina medyaya Herêma Kurdistanê di aliyê girîngîdayîna bi pirsa jênder' raporek weşand. Ev peymangeha ku 10 sal in li Kurdistanê dixebite û bingeha wê li Silêmaniyê ye, bo du mehên destpêka sala 2012yê çavdêriya 17 dezgehên ragihandinê (7 rojname, 4 radyo, 3 kanalên tv, 3 malper) kiriye.

Di vê demê de di van heft rojnameyan de 1839 nûçe hatine weşandin û 100 jê li ser mijara jênder bûn, ev jî dike nêzîkî ji sedî 5ê tevahiya nûçeyan. Herwiha ji 3006 nûçeyên kanalên asimanî, tenê 26 jê derbarê jênder bûn ku dike ji sedî 0,85 ji rêjeya tevahiya nûçeyan, ji 1971 nûçeyên malperan 35 jê derbarê jênder bûn ku dibe ji sedî 1,69ê nûçeyan, ji 1005 nûçeyên 4 radyoyan jî tenê 11 jê derbarê jênder bûn ku dibe ji sedî 1,12.

## "Medyaya kurdî siyasî ye"

Rêvebirê Peymangeha Kurdî bo Hilbijartinan û serperiştê vê projeyê, Aram Cemal amaje da wê yekê ku wan ev proje ligel rêxistineke Denmarkî hilbijartin û mebesta wan ji nûçeyên derbarê jênderê behskirina têkiliya navbera zilam û jinan de ye yan jî behsa wekheviyê "jênder di medya kurdî de weke pirsek girîngî pê nehatiye dayîn. Destnîşankirina vê mijarê jî bo wê yekê bû da bala medyayê bikşîne û bêtir nûçeyên li ser biweşînin. Ji ber ku medyaya kurdî medyayeke siyasî ye."Rêvebira Navenda Xatûzîn yê Pirsgirêkên Jina Kurd, Çilore Herdî behsa wê yekê kir ku medyaya kurdî tenê wê demê behsa jênderê dike dema jineke tê perçe perçe kirin yan ew xwe dişewitîne: "Gellekî kêm behsa jinê tê kirin û tiştê ku tê gotin jî tenê behsa kuştina jinan e û ev jî gellek kêm dibe manşeta rojnameyan. Qet behsa îmkan û dahênanên jinan nayê kirin. Li vir her kes bûye siyasî." Herdî televizyonan jî rexne dike ku kêm behsa mafê jinan dikin "Navenda me di 8ê Adarê de stranek bo jinan amade kir ku mil bi milê mêran xebat kirine. Me ev stran da hemû televizyonan, lê tenê yekê ew weşand."

## Di 9 hejmaran de 33 nûçe

Heftenameya Rûdaw yek ji van dezgehên medyayê bû ku ji aliyê KIE hatibû çavdêrîkirin. Ji 137 nûçeyên di 9 hejmarên Rûdaw de, 33 nûçe derbarê jênder bûn. Rêza duyem Rêwan digire ku rojnameyeke jinan e. Di vê raporê de bi giştî çavdêriya van rojnameyan hatiye kirin: Awêne, Hawlatî, Rûdaw, Livîn, Rêwan, Kurdistanî Nwê û Hewlêr.

Berpirsa Navenda Xatû Zîn rojnameya Rûdaw weke "yek ji rojnameyên baş" binav dike ku behsa mijarên civakî dike: "Ez bêtiriya caran di Rûdaw de li mijarên jinan digerim. Eger tiştek derbarê jinan hebe, ez dizanim wê di Rûdaw de hebê, lê bila gellekî behsa kuştinê neke, bila behsa serweriyên jinan bike."

Gotina 'jender' bo destnîşankirina van taybetmendiyên ku nirx û nîşanên civakî yên her civakekî bi şêweyekî cuda didin zilam û jinan, cara pêşî ji aliyê Ann Oakley û hevalên wê di salên heftiyan de hat bikaranîn.

### Fitûyên odeya razanê tevliheviyê derdixin

# Mele Cemal: Şîrê jinê ji mêrê wê re ne heram e

Yek ji bangewazên rêbaza selefî li Misrê, Cemal Merakbî, di fitûyekê de derbarê şîrê jinan ragihand ku vexwarina şîrê jinê ji aliyê mêrê wê ne heram e, lê karekî hêja jî nîne. Vê fitûyê gellek kes dilteng kirin û di malperên civakî yên înternetê de tinazên xwe pê kirin, lê hinek kesan piştgiriya Cemal jî kirin.

Xeleka fitûyên ecêb yên meleyên selefî, ku di vê serdema guherînên mezin de qala tiştên ne zêde girîng dikin, li Misrê ji wan re dibêjin "fitûyên odeya razanê" berdewam in.

Bangewazê selefî Cemal Merakbî, got şîrê jinê ji bo mêrê wê ne heram e, lê ne hêja ye jî. Wî got "ger rû jî bide êdî ev tişt zilam li jina wî heram nake."

Ev fitûya mele Cemal Merakbî, ku yek ji bangewazên rêbaza selefî li Misrê ye, di bernameyeke kanala asmanî ya El-Rehme de ku bi bangewaziya Îslamî kanaleke taybet e, hat nîşandan

Mele Cemal di bersiva pirsa wê yekê de 'ka gelo mêr dikare şîrê jina xwe vexwe' got: "Mêr nabe şîrê jina xwe vexwe, nabe şîrê wê bimije jî. Mêr çawa bixwaze dikare tahmê ji jina xwe bibîne, nabêjim heram e, lê nehezkirî ye." Merakbî herwiha got: "Mêr şîrê jina xwe naxwe, ji ber ku ew şîr ji mêr re çênebûye, lê ji bo zarokan e."

Ji ber ku fitûyên mele Cemal ecêb û balkêş in, ku di bernameya xwe "fitûyên rehme"yê de pêşkêş dike, pirrî caran dikeve ber lehiya henekpêkirin û acizbûna xelkê.

# Jênder di medyaya kurdî de

**Helşo Ebdilfetah ***

Ger li ser pirsa jênder bipeyîvin, karekî asayî ye bo gellek kesan ku bi tevahî jê fêm nekin, lewma pêwîst e behsa wateya wê ya dîrokî bê kirin. Peyva jênder têgiheke ingilîzî ye û di Anglo fransî de ji genre, gendre, latînî gener hatiye wergirtin bi wateya `etnîk, êl, cins, cor` piştre li gor derbasbûna demê hatiye guherîn û bûye jênder. Cudahiya civakî di navbera mêr û jinan de ye û nêrînên cihê li ser dîroka wê hene. Rayek heye idia dike ku destpêka bikaranîna wê vedigere sedsala 14., lê rayeke din wê vedigerîne sedsala 18. ligel wêya jî rayeke din wiha dibîne di salên 70 yên sedsala borî de bo cara yekê ji aliyê Ann Oakley û hevrêyên wê hatiye bikaranîn. Tiştê ku pêwîst e li serê rawestin ew e ka gelo heya çiqasî ev têgeh wek xwe û bi civaka kurdî hatiye naskirin û wergirtin? Di heman demê de heya çiqasî ragihandina kurdî girîngî dayê û wek her pirseke din ji pirsên siyasî û aborî û yasayî bûye cihê giraniya medyaya kurdî?

Tîma çavdêriya medyayê li enstîtuya kurdî bo hilbijartinan K.I.E, projeyek pêşkêş kiriye bi navê: projeya çavdêriya medyayê di aliyê girîngî dana wê bi çend pirsên cihê wek pirsên `jênder, mafê mirovan, hilbijartin û gendelî`. Armanca projeyê di rapora demsala yekê hatiye nivîsandin: kanalên ragihandinê ji asta girîngî dana wan bi pirsên cihê bên agahdarkirin. Yek ji armancên din ew e bikare serweteke mirovî di warê çavdêriya medyayê de li Kurdistanê bê çêkirin. Balkêş bû di 7 rojname û kovaran de, ji tevahiya 1839 nûçeyan tenê sed nûçeyan girîngî dane pirsa jênder, hinek kanal hene tenê nûçeyên siyasî û aborî didin, hinek kanalên me di 50 bultenên nûçeyan de tenê nûçeyeke jênder belav kirine.

Xaleke din di encama projeyê de derdixe hole ku ji nav kanalên asmanî, radyo û malperên înternetê de rojnameyan zêdetirî girîngiyê dane pirsa jênderê, ji sedî 16ê wan girîngî dane pirsa navhatî û wekî din jî kanalên asmanî herî kêm girîngî dane pirsa jênder ku bi rêjeya ji sedî 0.85, ev rêje jî wê yekê ji me re derdixin ku rojname bêtir girîngiyê didin pirsa jênderê û piştî rûdana şîdetê li hember jinan û nûçeyeke jênderê tê şopandin. Di nav vê rêjeyê de jî para mezin vedigere çend rojnameyan wek rojnameya Rêwan ku rojnameyeke jinan e û bi rêjeya ji sedî 48 girîngî daye pirsa jênder, piştre rojnameya Rûdawê hatiye heftenameyeke siyasî giştî ye û kompaniya Rûdaw derdixe bi rêjeya ji sedî 24 girîngî daye vê pirsê, ev girîngî dan jî bi tevahî wê hêncetê red dike ku ji aliyê beşek ji kanalên ragihandinê tê anîn ku kanalên wan bi siyasetê taybet in, lewma li gor lêkolîneke zanîngeha Bristol a brîtanî ku li Herêma Kurdistanê hatiye kirin, li gor encama vê lêkolînê hoyên şîdetê vedigerin sedemên siyasî, aborî, olî û civakî.

Ev encam jî me digihîne wê yekê ku mijara jênder ne li derveyî pirsên din yên vê herêmê ye û medyaya kurdî dikare pirsa jênder bi pirsên din ve girêbide. Tevahiya van encaman jî encamekê ji me re derdixe, ew jî ew e ku min di destpêka gotarê de îşaret pê kir ku jênder têgiheke nû ye û heya niha me hest bi girîngiya vê têgihê nekiriye, di heman demê de medyaya kurdî bo wergirên zêdetir bi aliyê xwe de bikişîne pirsên siyasî û aborî girîngtir û hêsantir dibîne.

** Organîzatorê projeya çavdêriya medyaya kurdî li K.I.E.*

# Bi hezkirin Mistefa Barzanî bibîr tînim



**Îsmaîl Beşikçî**

Kurd di sedsala 19. de bi desthilata Osmanî re di şerekî bê aman de bûn. Dîmenê giştî û hêjayî behskirinê yê vî şerê bi vî rengî bû; mîr, şêx û serokeşîrên Kurd ku bi Osmaniyan re di şer de bûn, piştî demekê, yan di qonaxeke diyarkirî de, xwe radestî dewleta Osmanî dikirin.

Ew mîr, şêx û serokeşîrên Kurd ku xwe radestî dewleta Osmanî dikirin, dest bi lûbandin û daxwaza lêborînê ji Osmaniyan dikirin, piştre jî li sirgûnê tenê gilî dikirin ku meaşê wan kêm e û têra wan nake! Em dikarin bêjin tevahiya serhildan û bizavên dijberiyê yên sedsala 19. di proseyeke bi vî rengî de derbas bûn. Di sedsala 19. de, di demên cuda cuda de, serhildan û berxwedan hebûn ku salekê du salan dom kirin û dawiya wan jî timî teslîmbûn bû.

Di sedsala 20. de jî, di destpêka dirustbûna komara Tirkiyeyê û salên dûre de jî, heman dîrok derbarê serhildan û berxwedanan dubare bûye. Lê tena kesê ku li derveyî wê rewşê ma, Mistefa Barzanî bû. Barzanî di hewldaneke bê navber û mişt ji xwe bawerî de bû, daku qet nekeve destê dijminên xwe de. Ev helwesta Barzanî ku xebata wî ji dawiya sala 1920ê dest pê dike û di 40, 60 û 70an de didome, di dîroka Kurdan de helwesteke ku cîhê lê hûrbûnê ye. Mistefa Barzanî bi berdewamî ev yek ji hevrêyên xwe re jî tekez kiriye û ew şiyar kirine ku qet nekevin destê dijmin û tedbîrên pêwist bistînin daku rastî teslîmbûnê nebin.

Bi dirêjiya dîroka xebata Barzanî tiştek nebû bi navê radestbûnê. Eger tevlî hemû tedbîran biketa destê dijmin de jî, teslîmbûn, daxwaza lêborînê û poşmanî, qet nebûne.

Mistefa Barzanî di 1947ê de, di heyama Komara Kurdistanê li Mehabadê, heman tişt bo Qazî Mihemed pêşniyar kir. Qazî Mihemed digel ku teslîmî Îranê bû, lê nabe wê helwestê jî ji bîr bikin ku di proseya dadgeha xwe de çok nedanî, daxwaza lêborînê nekir û poşman nebû, lê berevaniyeke bê navber li Kurdan û mafên wan kir.

Mistefa Barzanî ji xeynî vê taybetmendiya wî ya bingehîn, taybetmendiyeke girîng ya din jî hebû. Barzanî wek serokê PDKê ew kes e ku pirr bi başî ji siyaseta serdest li cihanê fêm kiribû. Di vê çarçoveyê de wek serokekî baş ji rola Amerîka û Sovyetê di siyaseta dinyayê de fêm kiribû. Dizanî Sovyet tiştekî baş ji Kurdan re nake. Ew di wan salan de gava bi pêşmergeyên xwe re li wir penaber bû, dûre jî ji ber helwest û reftara Sovyetê gihiştibû wê baweriyê. Bi ser de jî ew jî hatiye zanîn ku şêwirmendên Sovyetî

**Baruanî pirr baş ji siyaseta serdest a cîhanê fêm kiribû.**

yên Saddam Husên di proseya Enfal, Helebçe û qirkirina Kurdan de alîkariya Saddam kirine.

Lê Amerîka ti qenciyê bi Kurdan re dike? Dibe ku bike yan neke, lê eger qenciyek bi Kurdan re bê kirin, dibe ku bi rêya Amerîka be. Di baweriya min de Mistefa Barzanî bû ku bo cara yekê ev têgihiştin çêkir. Girîng e ew têgihiştin dirust bibe ku bê zanîn ku bi hevrikî û şerê ligel hêzekê ku siyaseta dinyayê diyar dike û birêve dibe, nagihîje ti cîhî!

Karbidestên Sovyetê qet mafê çarenivîsa gelan di qezenca Kurdan de şîrove nekirine, bi berdewamî rê li ber wê yekê digirtin ku Kurd li Rojhilata Navîn bibin xwedî pêkhateyekê. Di navbera bîrdozî û pratîkê de zêdetir cudahiyeke zêde heye. Nemaze jî di pirsa Kurd û Kurdistanê de bi vî rengî ye! Ev demekê dewlet gelê Kurd binpê dikin, ev cudahî li dijî Kurdan e.

Di salên 1975 û 1991ê de, di bin sîbera siyasetên Amerîkayê de, derbên kujer li Kurdan ketin, lê sala 2003yê prose pirr cuda derket. Êrîşa eskerî ya Amerîkayê di sala 2003yê de bû sedemê hilweşandina rêjîma Saddam Husên. Artêşa Îraqê hat hilweşandin, partiya Baasê û dezgeha sîxuriyê jî bi heman awayî hatin rûxandin, çekên tevkuj ji navê hatin birin, rê li ber Kurdan vebû, rêveberiya Herêma Kurdistanê bi vî awayî dirust bû. Bêguman Amerîka ji bo parastina berjewendiyên xwe êrişî Îraqê kir, lê kifş e jî ku rêveberiya Herêma Kurdistanê piştî vê êrîşê bi tevahî hat pêkanîn. Dîsa rastiyeke din jî heye ku nabe bê ji bîr kirin ku rêveberiya Herêma Kurdistanê, digel ku Amerîka û Tirkiye jî ne razî bûn bi dirustbûna wê, lê di encama xebata berdewam ya Kurdan de çêbû. Xebata rewa ya Kurdan wisa kir ku Amerîka jî di dawiyê de razî bibe û vê rastiyê qebûl bike.

Di heyama Saddam Husên de samana xwezayî ya Kurdistanê di berjewendiyên aborî û siyasî yên rêjîma wî de dihatin bikaranîn. Beşek ji pereyên ku ji firotina petrola Kurdistanê diketin destê rêjîma Îraqê de, dikirin mayîn, bombe, xaza jehrê, Enfal, hejarî û hejarkirin û li ser Kurdan dibarand! Lê belê îro rêveberiya Herêma Kurdistanê di hewldaneke zêde de ye bo avakirinê. Rê, pir, bendav, nexweşxane, dibistan, zanîngeh, taxên nû, avahî û cîhên akincîbûnê tên çêkirin. Kurd vêga dixebitin daku bibin xwediyên serwetên xwe yên xwezayî û gaz û petrola xwe. Zimanê kurdî, çanda kurdî û huner û edebiyata kurdî di pêşketin û pêşveçûnê de ne.

Di vir de dîsa pêwist e balê bikişînin ser taybetmendiyeke din a hêza Mistefa Barzanî. Barzanî Kurd ma û hesta wî ya Kurdîniyê pirr xurt bû. Bi liberçavgirtina pêgeha cîranan û rewşa dinyayê, fêm kiribû ku Kurd çiqasî hatine binpêkirin. Pirr girîng e qala vê taybetmendiyê bikin, ji ber ku bi dirêjiya salên kolonîkirinê, eger deverek nehatibe kolonîkirin jî, yanî tenê dewlet bi bername bo guherandina pêkhateya wê xebitîbe, êdî hesta netewî sar û xilmaş dibe, mirov digel ku dibêje 'Kurd in', lê ji Kurdîtiyê tên dûrxistin. Li cîhekî ku dewletê bi awayekî zêde hewldana tinekirinê dabe, mabûna wek Kurd û parastina Kurdîtiyê pirr giranbiha ye.

Bi hezkirin Mistefa Barzanî û hevrêyên wî yên xebatê bibîr tînim.

# Ji ber çi Kurd serxwebûna xwe ranagihînin?



**Eyûb Nûrî**

Her dema ku derbarê Kurdan de gotarekê dinivîsim, an ligel siyasetvan, mamosteyekî zanîngehê, rojnamevan an welatiyekî ji rêzê yê biyanî nîqaş dikim, di cîh de ji min dipirsin "Çima hûn serxwebûnê îlan nakin?". Pirr caran ev kes dîroka Kurdan, an bextreşiyên ku di wan de derbas bûne, nizanin. Lê bi bihîstina hinek karesatan bi baweriya wan Kurd hêja ne ku dewleta wan hebe û fêm nakin çawa heya niha dewleta Kurdan nîne.

Di rewşên wisa de ez bi xwe diramin ji ber çi dewleta me tune. Gelo ji ber wê yekê ye ku em ne hêjayî dewletê ne? Gelo ji ber wê yekê ye ku em nikarin xwe birêve bibin? Gelo ji ber wê yekê ye ku lîderekî me tine bikare neteweya me ber bi wê encamê bibe? Naxwazim bi gefa welatên cîran wek Îran û Tirkiyeyê biramim. Bi baweriya min ew gef hatiye mezinkirin û tirseke bê bingeh e. Bêguman Tirkiye û Îran naxwazin Kurdistaneke serbixwe bibînin, lê Kurd tirsa ku heye mezintir dibînin.

Tena bersivek ku tê mejiyê min ew e ku naxuye bi rastî em dewleta xwe dixwazin. Bêguman her roj em behs dikin. Her mêrek, her jinek, an her lîderekî Kurd bidî axaftin, ji te re dibêje ku Kurdistaneke serbixwe xewna her Kurdekî ye, lê kêşe ew e ji ber çi bo me Kurdan dewleta serbixwe tenê xewn e. Pêwist e wek armancekê lê bifikirin ku bi her rêyekê be bicîh bînin. Dibe ku xewna Kurdistaneke serbixwe şêrîn be

**Pêwîst e Kurd bi dengekê bilind ji Îraq, Îran, Tirkiye û Sûriyê re bêjin: Em naxwazin ligel we bijîn!**

lewma em her wê di xew de dibînin. Bicîhanîna armancekê ne hêsan e. Pêdiviya wê bi kar û kedê heye. Lewma me xewn hilbijartiye. Divê Kurd êdî nebêjin Kurdistaneke serbixwe xewna me ye, ne xewn e, lê kabûs e. Nebûna dewleta me kabûseke ku nahêle em razin. Çendîn sal e xew li me heram kiriye û heya em vê kabûsê ji nav nebin ti Kurdek aram nabe.

Cihê şermê ye ku piştî dehan sal ji serkutkirin, qirkirin û redkirina nasnameya me, niha jî her xwe bi Bexda, Enqere, Tehran û Şamê ve girêdidin û daxwaza çareseriyê ji wan dikin. Niha jî di baweriya me de kilîtên bexteweriyê di destê wan paytextan de ne. Ji sala 2003yê ve dibe ku bo hetahetayî ligel Îraqê bimînin, ji ber destûreke bêwate ku ti kes rêza wê nagire. Li Tirkiyeyê jî, piştî dehan salan ji kuştina Kurdan û wêrankirina gundan, siyasetvanên Kurd hêvî dikin ku bi zêdekirina çend maddeyan li destûra Tirkiyeyê her tiştî çareser bikin. Partiyên kurdî yên Îranê jî ji bilî ku pêkenok in, ne tiştekî din in. Bi xwe jî nizanin çi dikin. Çend caran parçe bûne û xwe û Kurdayetî jî kirine tinaz. Kurdên Sûriyê jî ji wan ne baştir in, parçe parçe ne û serê wan di gêjiyê de ye.

Pêwist e Kurd bi dengekî bilind û ron ji Îraq, Îran, Tirkiye û Sûriyê re bêjin: Em naxwazin ligel we bijîn, eger baştirîn destûrên we di dinyayê de jî hebin. Em dixwazin cuda bibin û serbixwe bin, eger hûn baştirîn demokrasiyên vê cihanê jî bin.

Gelo ne şerm e piştî Enfal û windakirina Barzaniyan, kuştina 5 hezar kesan li Helebçe, îdamkirina sedan ciwanên Kurd, niha jî her em dixwazin ligel Îraqê bin? Ji dêvla ku em ji karesatên xwe dersan bigirin, me destê xwe daye destê Nûrî Malikî û Tariq Haşimî, wek ku milyaket bin û ji biheştê hatibin. Eger Kurd berê xwe bidin wî dîmenê ku tê de dest û devê Ocalan hatine girêdan û bi biçûkxistin di firokeyekê de ji Kenyayê tê veguhastin bo Tirkiyeyê, careke din ti Kurdek naxwaze ligel Tirkiyeyê bijî. Gava mirov li wêneyê Qazî Mihemed dinêre ku bi sêdarê ve hatiye daliqandin, ti Kurdek naxwaze ligel Îranê bijî. Wêneyê zarokekî xeniqî li ser kolanên Helebçe bes e, daku ji Îraqê cuda bibin.

Gava lîderekî Kurd tê girtin yan îdamkirin, gava jineke Kurd dikeve ber destdirêjiyê de û tê biçûkxistin, gava malbateke Kurd li çolistanê tê veşartin, ew hemû neteweya Kurd e ku tê zindanîkirin, biçûkxistin, darvekirin û veşartin. Çend sedem pêwist in heya em fêm bikin ku divê em serbixwe bin? Pêwist e di çend karesatan de derbas bibin heya em fêm bikin ku êdî tahmul nakin? Heyameke em li dijî van rejîman şer dikin û em bi xwe jî nizanin ji ber çi. Hezar caran me bîr û baweriya xwe guhertiye. Em daxwaza serxwebûnê dikin, daxwaza otonomiyê dikin, daxwaza federaliyê dikin û daxwaza cudabûnê dikin. Daxwaza mafê çarenivîsê jî dikin. Em ji xelkê başûrê Sûdanê û Kosovo bêtir pisporên têgihên siyasî ne, lê ji pêşî û heya dawî yek daxwaza wan hebû ku ew jî serxwebûn bû. Niha têgihandina dinyayê ku Kurd hatine qirkirin bûye tena armanca me, hem xelkên ji rêzê û hem lîderên me jî pirr kêfxweş dibin gava kesek dibêje Kurd hatine binpêkirin. Zêdeyî 20 dewletan qirkirina Ermeniyan ji aliyê Tirkiyeyê ve nas kirine, lê vê yekê rê li ber Tirkiyeyê negirtiye xelkê hîn jî bikuje.

Li cem şivanê li keviya cadeyekê raweste, here nava mizgeftekê, ligel şagirt yan lîderekî bipeyive, hemû wê ji te re bêjin niha ne demeke kêrhatî ye bo serxwebûnê. Wê ji te re bêjin ne di berjewendiya me de ye. Dibînî her Kurdek bûye dûrbîn û pisporekî siyasetê. Dibêjin Kurdistaneke serbixwe 3 rojan dom nake, dibêjin welatên cîran êrîş dikin û sînorên xwe digirin. Dibêjin careke din emê mişextî bibin û birçî bibin. Lê gelo timî em nehatine mişextkirin û birçîkirin ji aliyê van dewletan bi xwe ve? Bila vê carê birçîtî û karesatên me bo serxwebûna me bin.

# Fikirandina demên borî zerarê dide tendirustiya mirov



» Kesên ku dema niha û dema borî bi xweşî derbas dikin bextewartirîn kes in; lê hizirkirina demên borî bo tendirustiyê xetere ye.

Jiyana di nav êş û trajedyayên borî de ne tenê dibin sedema xweşiyên îro û sibe, lê dahatûya mirov jî nexweş dikin û zerarên xirab didin tendirustiyê.

Lêkoler dibêjin ev kesên ku hertim berê xwe didin demên borî, fikra poşmaniyên xwe dikin û fikra wan derfetên ji destê wan çûne û bûne sedema tevliheviyê, dikin, bêtir nexweş dikevin û jiyaneke netendirustir derbas dikin.

Eşkere bûye ku ev kesên bi acizî hizra nexweşiyên xwe yên borî dikin li himberê azarê bêtir hestiyar in. Herwiha bi hûrî lêfikrîna derbarê rojên dahatî zerarê nade, lê xweşiyên hemdem ên van mirovan kêm dike.

Li gor lêkolînan bextewertirîn kes ew in ku niha û dahatû bi xweşî derbas dikin, herwiha wisa fikra demên borî dikin ku bo wan û planên wan ên dahatû re bibe ders.

Ev lêkolîn ser 50 jin û mêran hatiye kirin û derbarê hestên wan ên li ser demên borî û dahatûyê wan pirs ji wan hatine kirin, herwiha derbarê tendirustiya wan a derûnî û corê jiyana wan. Piştî vê jî bersivên wan hatine hevberkirin û derketiye holê ku ewên di nava xemên borî de jiyana xwe derbas dikin tendirustiya wan ji yên din xirabtir e.

Ev lêkolîn li Zanîngeha Granada ya Spanyayê hatiye kirin û lêkoler dibêjin hizirkirina derbarê xemên borî li ser rewşa tendirustî û derûnî ya mirovan bandorê dike.

# Cigare kişandina dêbavan zarokan rastî penceşêra xwînê dike

Li gor lêkolîneke nû ya Awûstralî rêjeya pêketina bi nexweşiya penceşêra xwînê di nava zarokên ku dayik û bavên wan cigareyan dikşînin bi rêjeya ji sedî 15 bêtir e ji zarokên ku dayik û bavên wan cigareyan nakşînin.

Grûpa lêkolînê bi serokatiya Dr. Elisabeth Meln ji Peymangeha Tilson bo Tendirustiya Zarokan, li ser 400 zarokên pêketiyên nexweşiya "Leukemia" tund ku belavtirîn nexweşiya penceşêra xwînê ye li cem zarokan, lêkolînek sazkirin.

Lêkoleran bo vê xebata xwe derbarê cigarekişandinê pirs ji dayik û bavên hemû zarokan kirine û di dawiyê de ligel 800 zarokên tendirust ên di heman temen de hevberkirine.

Ji lêkoleran re eşkere bûye ku ev zarokên dayik û bavên wan di malê de cigare dikşînin bi rêjeya ji sedî 15 bêtir bi penceşêra xwînê dikevin. Herwiha ev zarokên ku bavên wan rojane 20 cigareyan dikşînin û tevahiya rojê di mal de ne, bi rêjeya ji sedî 44 xetera pêketina bi penceşêra xwînê li ser wan heye.

Patricia Pelver ji Zanîngeha Kalîfornia di vê derbarê de got ***"Dixuye ku cigarekişadina dayik û bavan bandoreke metirsîdar û rasterast e li ser vê nexweşiyê."***

Lê vê lêkolînê ev yek jî îsbat nekir ku tirşê nava ava mêrên cigarekêş dibe sedema pêketina zarokên di malzarokî de bi penceşêra xwînê yan na.





## Xaçepirs

**Çeperast:** 1-Meha 8 an – Cûreyekî masîyan – Vexwarinek sereke. 2- Bîber, zebzeyek tûj û şîrîn– Jiyana xweş, dilşadî. 3- Kom, çem, gol – Pêşnavê zanyarekî Alman, ...Marks (berepaş) – Pantolon, şerwal, qumaş, çewalê zirav û dirêj. 4- Nehatin, li cîh, li şûnê – Bi Erebî "şêr" – Navekî zilaman, şîrînê ber dil – Damar, reh, kok. 5- Li Fransayê bajarek (berepaş). 6- Maf, dad, ked – Hîç, tune, nabe. 7- Çek û sîlehek kevnare – Xwedanenas, kafir. 8- Dirankirizî, kesê ku diranên wî reş in. 9- Êşkence, lêdan – Pirsgirêk, serêşandin, problem. 10- Xwarina ji mast û dan – Gundekî bakurê Kurdistanê (berepaş).

**Serejê:** 1-Meha 7 an – Lîztikek bi 16 keviran. 2- Di notayê de nîşana seknê – Ducanî ye, bi hemle ye. 3- Kesên ji Bosnayê – Dîn, çavsor, êrîşkar (berepaş). 4- Li Îspanyayê rêxistinek (berepaş) – Jin li xwe dikin. 5- Li ser mirîyan tê xwendin. 6- Li Îspanyayê herêmek, navê trimbêlek Ford ê. 7- Armanc, kam, daxwaz – Belê, temam, başe. 8- Erd, xak, xwelî – Doktor – Maddeyek kîmyevî û xeter, tûjayî. 9- Li Almanya kanalek televizyonê – Qat, pile, bergeh, rade – Dilxweş, kêfxweş. 10- Meraq, armanc, kama dil – Li Rojhilata Navîn milletek. 11- Deng, meqam, loxet. 12- Kesê ku mey û eraqê digerîne. 13- Rît, bi xwe de kir (berepaş). 14- Kar, xebat. 15- Agir, namûs. 16- Ne tije, pûç, tune.



Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu


Tîrêj


Perî

# Xwişkek ji Tîrêj re çêbû

Perî di 14.02.2012ê de, yanî di roja evîndaran de hatiye dinê. Ew xwişka Tîrêj e. Tîrêj ji aliyekî ve gellekî bi çêbûna Periyê kêfxweş e, lê ji aliyê din ve kêfa wî ne ewqasî di cîh de ye, ji ber ku dê û bavên Tîrêj gellekî dema xwe didin Periyê û Tîrêj jî ji vê yekê aciz e. Lê em weke malbata Rûdawê bi çêbûna Periyê gellekî dilxweş in û ji bo wê temenekî dirêj û tendirust dixwazin.

# Zarok havînan ji demsalên din bêtir mezin dibin



Li gor lêkolîneke nû, zarok havînan ji demsalên din bêtir mezin dibin. Lêkolîn eşkere dike ku rewşa xerab a psîkolojiya zarokan mezinbûna wan asteng dike û gellek caran radiwestîne jî. Sedem jî belkî ew e ku zarok havînan ji karê xwendin û dibistanê azad dibin û psîkolojiyan wan baştir e. Li gor vê lêkolînê di havînan de tevgera zarokan a zêde gellekî ji wan re dibe alîkar ku mezin bibin. Lê rûniştina wan li ber kompûter û televizyonê çêbûna wan a xwezayî asteng dike.






## Heft cudabûnên di navbera herdu wêneyan de bibîne










## Karîkator




Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk